Bidestveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 154
6'ê Adara 2011
Buha: 150 Tûmen

# Agirî

## Peyama Nesrîn Qasimlo bi boneya 8' Adarê, roja navnetewî a jinan

R: 5

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîn www.kurdistanmedia.com/kurdi




### 20 îdam li sê rojan de
#### Şemendefira Îdama rejîmê xurttir dimeşe

Komara Sîamî li sê rojan de 20 kes ji şaromendên Îranî li bajarên cur bi cur de îdam kirin. Gorî ragihandinên rejîmê, tometa wan qaçaxa madeyên bêhişker bûye. Piraniya wan îdamkiriyan kurd û zêde jî xelkê Urmiye ne. Rêxistina mafê mirov a Îranê serbarê mehkûmkirina van îdaman, ragihand ku hikûmeta Îranê ji bo mana xwe ji îdam, wehşet û tirsandina xelkê mifahê distîne. Gorî vê rêxistinê li sala 2010'an de 546 kes li Îranê de hatine daliqandin û li du mehên destpêka 2011'an de jî zêdeyî 100 kes hatine îdamkirin.

**Hîlarî Kilînton:**
### Komara Îslamî di aloziyên Mısr, Yemen û Behrênê de dest heye

Wezîra kar û barên Derve ya Amerîkayê li axaftina xwe ya roja çarşemî li Senaya Amerîkayê de got: Îranê bi awayek rasterast yan nerasterast bi neraziyên Misr, Yemen û Behrînê re pêwendî heye. Kilîntonê da zanîn ku Îran hewl dide pêla nerazîtiyan di wan welatan de rêkbixe û ji Hizbullayê mifahê distîne heya ku ew jî bi hevalbendên xwe re têkiliyan pêk bîne û Îran hewil dide bi her terzekê be, tesîr û bandorê li ser encamên alozî û guhertinên li wan welatan de bike.

## Biryarnameya dijî Qezafî, Gavek bêmînak û Hişdariyek mezin bi dîktatoran

R: 7

# Gavek girîng ji aliyê Ewropayê ve
## 80 kes ji binpêkerên mafên mirov li Îranê dikevin nav lîsteya reş a Ewropayê

Yekîtiya Ewropayê navê 80 kes ji bikuj, serkutker û binpêkerên mafê mirovan ên ser bi rejîmê xiste nav lîsteya cezayên xwe. Kesên han ji berpirsiyarên herî payebilind yên hikûmeta Îranê ne.

Ji wan em dikarin îşare bi Husên Elah Kerem, fermanderê Ensara Hızbullahê, Husên Taib, fermanderê berê yê Besîc, Ehmedreza Radan, qayîmmeqamê hêza Întizamî, Îsmaîl Ehmedî Muqedem, fermanderê Hêza Întizamî, Hesen Fîrozabadî, Serokê navenda hevpar a hêzên çekdar, Muhemed Elî Ceferî, fermanderê Sipaha Pasdaran, Heyder Mislihî, Wezîrl Îtilaatê, Muhsin Nayibî, fermandarê giştî yê Tehranê, Mistefa Muhemednecar, Wezîrê navxwe, û çend wezîrên din weke: Muhemed Husênî, Sadiq Mehsûlî, Kamran Danişcû, Xulamhusên Ejeyî, û herweha dadistanê berê yê Tehranê Seîd Murtezewî û Husên Şerîetmedarî, berpirsiyarê rojnameya Keyhan û ... bikin.

Ev gava Ewropayê jî bona rêzgirtin ji mafê mirov gelek girîng e, jiberku heya niha pirsa mafê mirov li Îranê de ketibû perawêza pirograma navikî a rejîmê.



### Derî Her Li Ser Paniya Xwe
Dizivire

Mistefa Hicrî

Şiroveyek rexnegirane derheq "Deqa tewaw ya carnameya dûyem a Bizava Kesk" R: 4



### Rejîma Îranê riswatir
ji her demekê

Selîm Zencîrî

Komara Îslamî a Îranê yek ji wan rejîmên dîktator, dijî mirovî û serberedayî ye ku li midehê sê dehsalên desthilatdariya xwe de, ji ber siyasetên nerewa, şerxwazane û pawanxwazane... R: 7



### 8'ê Adarê û bindestiya
jinan

Senar Hatemî

Em li demekê de pêşwaziya 8'ê Adara îsal dikin ku rewşa cîhanê li gel salên berê hin cuda ye... R: 9



### Dîmenên Îtiyadê di
sînemayê de

Mumtaz Ebdollahî

Îtiyad çi wek tawan û çi wek nesaxî hertim bala fîlmsazan û alîgirên sînemayê bo aliyê xwe rakişandiye. Helbet ya ku li bîr... R: 11

# Seredana heyetek PDK Îranê bo Encumena Siyasî a Kurdên Sûriyê

Sibêdeya roja 30' ê Şibatê, heyetek Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi serokatiya Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê Partiyê, seredana Encumena Siyasî a Kurd li Sûriyê kir û ji aliyê Dr. Mehmûd Ereb, Serokê gerrî yê Encumena Siyasî û hejmarek ji endamên encumenê ve bi germî hat pêşwazîkirin.

Di wê seredanê de her du aliyan rewşa Kurd bi giştî û ew guhertinên ku di deverê de hatine pêş û bandora bûyerên deverê li ser her çar parçeyên Kurdistanê xistin ber bas û her du aliyan rewşa han bi qazancê cîhana demokrat û mirovdost zanîn.

Herweha Mistefa Hicrî rewşa îroyîn a Îran û Kurdistanê û îzolebûna pêtir a rejîma Komara Îslamî a Îranê û kûrbûna pirsgirêkên navxweyî û herweha hejarî û bêkarî a zal bi ser Îranê de ku rejîma zal bi ser Îranê de sebebê wê rewşê ye şirove kir.

Di dawiyê de her du aliyan



pêdagirî li ser herçi pêtir û xurtkirina pêwendî û hevahengiya navbera hêzên siyasî ên Kurdistanê kirin.

## Sergotar

### Hewcehiya rê û cihên rijdtir ji Lîbiyê li dijî Îranê

Arîn

Li doma hewl û bizavên navnetewî bona mehkûmkirin û pêşîgirtina ji nifşkujî û xwînrijiyên zêdetir ji aliyê Muemer Qezafî li Lîbiyê de, gavên baş û cihê pesnê hatine avêtin û welatên demokratîk ên cîhanê bi yekdengî, riftarên tund û tûj û serkutkarane ên dewleta Lîbiyê mehkûm û bona cezadana Qezafî û dubare nebûna trajîdiyan ketin tedbîr û vedîtina rêçareyeyan. Her ev zext û givaşên navxwyî û piştewaniyên derekî bûne bi gefek mezin bo ser jiyana dîktatoriyeta Qezafî, çunku niha bas ji diyarîkirina hêla dijîfirîn û heta êrîşa leşkirî li dijî hovê Lîbiyê li rojevê de ne; nemaze dadgeha Laheyê jî ketiye kar daku bi lêkolînên xwe, cinayetan bi nivşkujî, tawana cijî mirovahiyê bide nasîn. Çimkî gorî nûçeyan tenê li vê midehê de nêzîkî 7000 kes hatine kuştin û bi sedan hezar kes jî derbider bûne; û hêjî sîbera metirsiyan berdewam e. Ev helwesta mirovdostane a rojava li hember Qezafî de cihê dilxweşiya hemû azadîxwazan û xemgînî û bi tav û lerz ketine hemû dîktatoran, bi taybetî rejîma Îranê bû.

Niha pirsiyarek derdikeve holê ku erê gelo, rojava li hember hemû dîktator, tepeserkar û cînayetkaran de amade ye ku helwest û dijkiriyarek hevşêwe bigre ber xwe?

Ji ber ku Komara Îslamî a Îranê, yek ji wan rejîmên hov, cinayetkar û pêpeskarê mafên mirov e û karnameyek reş û tejî tawan li vê derheqê de bo xwe tomar kiriye. Her ji destpêka desthilatdariya xwe de heya niha xwe ji tu cinayet û reşekujî û tirajîdiyekê neparastiye; her ji fermana cîhada Xumênî li dijî kurdan ve bigre heya kumkujiyên sala 67'ê, qetlên rêzokî, terorkirina neyaran û kuştina sîstematîk ya xelkê cudabîr, kasibkar, nerazî û azadîxwazan. Bi taybetî li vê 1/5 sala derbasbûyî de pêvajoya serkut û tund û tûjiya xwe xurttir û şemendefira îdama xwe jî bileztir kiriye û bi keyfa dilê xwe digre, dikuje û îdam dike û bi gef û çavsoriyên xwe jî, tovê tirs û wehşetê her roj zêdetir li nav xelkê de direşîne û ...htd. Lê serbarê hemû evana, hêj helwestek jêhatî û cihê pesnê li hember cînayetên Komara Îslamî de nehatiye girtin, nemaze tim pirsa mafê mirov li perawêzê û kirine goriyê berjewendî û dan û standinên bazerganî yên xwe.

Lewma niha li vê zirûfa hesas de, bi berçavgirtina cewher û kakila rastîn a rejîmê, girîngî û pûtedan bi pirsa mafê mirov û kêmaniyên netewî li Îranê de li serweyî hemû pirsên din û girtine pêş a helwestek zelal û hevşêweya dijî Lîbyayê li dijî Komara dijî mirovî a Îslamî a Îranê weke hewcehî û zerûretek dîrokî xwe nîşan dide û divêt rojava bi heman cesûrî û zelaliya derheq pêpeskirina mafê mirov li Lîbyayê de, rejîma Îranê jî bixe bin zext û givaşên siyasî û dîplomatîk de û şibî Lîbiyê ji endametiya komîsyona mafên mirov a NY û li kom û saziyên din de bide avêtin û hukmê girtina wan derbike. Çunku, xwasta xelkê Îranê jî, weke xelkê Lîbî, Misir, Tûnis û welatên din, maf û azadî û guherîna bingehîn li sîstema siyasî a welat û cihgîrkirina hikûmetek xelkî û sekolar e ku bersivderê xwast û daxwaziyên tex û qatên cur bi cur ên civakê be ye. Lewma xwenîşandanên li Îranê tu ferq û cudahiyek bi yên li Lîbî û dîktatorlêdayî ên din nine; û ev rê û cih û hewlên ku ji aliyê rojava ve bo Lîbyayê hatine girtin, gelek xurt û rijdtir jî li dijî Îranê hewce ne.

## Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDK Îranê bo piştgirî ji kempîna berevanî ji girtiyên siyasî ên netewên Îranê

**Hevwelatiyên birêz!**
**Xelkê xebatkar yên Kurdistanê!**

Di çarçoveya xebat dijî binpêkirina mafên siyasî ên netewên Îranê, roja Yekşem 21'ê Şibata 2011'an, daxuyaniyek bi armanca berevanî ji mafên binpêkirî ên



wan girtiyan û liqawdana cinayetên Komara Îslamî di wê pêwendiyê de ji aliyê komek NGO û kesayetiyan, li jêr navê"Kempîna Berevanî ji Girtiyên Siayî ên Netewên Îranê" hat ragihandin û piştî wê ragihandinê kempînê daxwaz ji Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê kir ku di wê pêwendiyê de piştgiriya wan bike.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ku hertim dijî hepsîkirina xelkê, bi tawana hebûna dengê cuda û alîgirê parastina mafên wan bûye, hewlên vê kempînê bilind dinirxîne û piştgiriya xwe ji armancên ku berevanî ji mafên binpêkirî ên girtiyên siyasî ên netewên Îranê û liqawdana cinayetên rejîma Komara Îslamî ye, radigehîne û daxwaz ji endam, alîgir û dostên xwe û ji hemû hevnîştinanek azadîxwaz yê Îranî û her Kurdek dilsoj li her cihek vê cîhanê de dike, hevkar û yarmetîderê vê kempînê bin.

**Deftera Siyasî a Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**22'ê Şibata 2011'an**

## Daxuyaniya çapemeniyê

Azadî Bo Girtiyên Siyasî ên Îranê

Rejîma Cumhuriyeta Îslamî ya Îranê, bi girtin, lêdan û dardakirina muxalefeta xwe va, hertim di rojevê da bûye. Rejîma Îranê îro jî ketiye rojevê, ji ber ku di rojên dawiyê li vê welatê da zordarî li ser opozîsyonê û hêjmara girtiyên, ku têne bi darda kirinê, zêde bûne.

Hukumeta Cumhuriyeta I.slamî, s,una, ku guh bide daxwazên opozîsyonê, zilm û zordariya xwe tundtir dike.

Çalakvanên mafê mirov û civaka sîvîl yên ji hemu rengên Îranê, ku dijî siyaseta hanê ya rejîma Îslamî ne, belavokek derxistin û ragihadin, ku dest bi Kempîna Berevanîkirin Ji Gîrtiyên Siyasî Ên Netewên Îranê kirine.

Armanca Kampîna hanê, derxistina ?tawanê siyasi? ji sîstema huquqî ya Îranê, xebat kirin dijî zilm û zordarî li ser bîr û bawerîya sîyasî û ol û çand û azad kirina ?girtiyên siyasî? ne.

Çalakvanan biryar dane, ku ji bona armancên hanê, derbareyê hêjmara ?gîrtîyên siyasî? û rews,a wan, zanyarî berhev bikin û bigihinin destê dezgeyên mafê mirov yên navnetewî, daku fis,ara xwe li ser rejîma îranê bi hêztir bikin.

Partiya me pis,tgiriya xwe li Kempîna Berevanîkirin Ji Gîrtiyên Siîyasî Ên Netewên Îranê û daxwazên wê yên mirovî û hevdemî dide xuya kirine û ji karbidestên Îranê daxwaz dike, ku guhê xwe bide daxwazên Kampînê û ?girtiyên siyasî? azad bike.

PSK banga hemu hêz û partiyên siyasiyên Kurdistanê dike, ku pis,tgiriya Kampîna hanê bikin.

PSK ji dezgeyên mafê mirov yên navnetewî daxwaz dike, ku guh bidine hewara çalakvanên Kempîna Berevanîkirin Ji Gîrtiyên Siyasî Ên Netewên Îranê û zext li rejima I.ranê bikin daku mafe mirovê pêpes neke û gîrtiyên sîyasî azad bike.

**Partiya Sosyalîst a Kurdistan-PSK**
**03 Adar 2001**



# Daxuyaniya hejmarek ji Part û Saziyên Kurdistanî li dor bûyerên vê dawiyê ên Başûrê Kurdistanê

**Xelkê mafxwaz yên Kurdistanê!**
**Partî û saziyên siyasî!**
Derketin û hatine ser şeqama hejmarek ji xelkê bajarê Sulêmaniyê bi armanca xistine berçav a xwast û daxwazên xwe, li roja Pêncşemî, 17'ê Şibata 2011'an, mixabin gihîşte encamekê ku cihê nîgeraniyê bo hemû aliyekê bû. Bajarê Sulêmaniyê tûşî alozî, tund û tûjî û hin kiryarên dûr ji çavnihêriyê bûye ku bo me û xelkê Kurdistanê û hemû dostên gelê Kurd cihê dax û nîgeraniyê bû.
Em bi nirxandina rewşa siyasî a Herêma Kurdistanê û ew seqaya demokratîk û medenî a ku di Herêma Kurdistanê de heye û derfeta anîne ziman û nîşandana xwast û daxwazên civatên xelkê bi awayeke asayî heye, li ser wê baverê ne ku dibe ew cure daxwaziyane bikevin ber çavên dem û dezgehên Herêma Kurdistanê ku bi awayek demokratîk û yasayî ji aliyê xelkê Kurdistanê ve hatine hilbijartin û hitbar û bawerî bi wan hatiye dayîn, bêguman bi hest biberpirsyatiyê ve dê girîngiyê bi wan daxwazan bidin û gavên pêwîst dê jêre bavêjin.
Di rewş û zurûfek hesas a weke niha de ku destkevtên netewî û demokratîk ên gelê Kurd li Başûrê Kurdistanê ber bi seqamgîriyê ve diçin û Herêma Kurdistanê û desthilata wê ya siyasî û netewî ji aliyê kom û komelên navnetewî ve girîngî pê tê dayîn û bizava rizgarîxwaz a gelê kurd ber bi pêşerojek geş ve gavan hiltîne, her cure kiryarek li Herêma Kurdistanê ku gelê Kurd tûşî dilkutê û nearamiyê bike û tesîr û bandorên nerênî li ser destkevtên gelê Kurd hebe, di xizmeta berjewendiyên bilind ên xelkê me de nabe. Lewma serdagirtin û êrîşkirine ser binke û bargehên partî û nawendên hikûmeta Herêma Kurdistanê, nikare xizmet bi armancên pîroz ên gelê me bike.
Em partî û aliyên siyasî ên Kurdistanî, daxwazê ji aliyên pêwendîdar ên Başûra Kurdistanê, ji hikûmet û opozîsyonê dikin ku bo dawîanîna bi vê aloziyê û çareserkirina pirsgirêkan bi awayek îroyîn û bi canê biratiyê ve riya diyalogê bigrin ber xwe û bi vê gava netewî, şanaziyek din bo gelê me tomar bikin û pîlanên neyarên gelê me ku berdewam hewla tevlîhevkirina rewşa Herêma Kurdistanê didin, pûç bikin û ewlehî û aramiyê bo hemû bajar û bajarokên Herêma Kurdistanê vegerînin.
Navên wan partî û saziyên ku ev daxuyaniye wajo kirine:

**Ji Kurdistana Îranê:**
**-Partiya Demokr a Kurdistana Îranê**
**-Saziya Xebat a Kurdistana Îranê**
**-Partiya azadî a Kurdistanê**
**Ji Kurdistana Sûriye:**
**-Heyeta Herêma Kurdistanê, Encumena siyasî a Kurd li Sûriyê ku pêkhatiye ji 9 partî û saziyên siyasî**
**-Encumena Bilind a Hevbendiya Demokrat a kurd li Sûriyê pêkhatî ji du hizb û hejmarek kesatiyên serbixwe**
**Ji Kurdistana Turkiyê:**
**-Partiya Sosyalîst a Kurdistana Bakûr**
**-Partiya Welatparêzên Demokrat ên Kurdistanê PWD**
**-Partiya Demokrat a Kurdistana Bakûr**
**22.02.2011**

# Daxuyaniya kempîna berevanîkirin ji girtiyên siyasî ên netewên Îranê

**Xelkê azadîxwaz yên Îranê!**
**Kor û civat û saziyên berevankar ên mafên mirov!**
Mêjdem e Îran welatê dîktatorlêdayî yê me, derbasbûyek dûr û dirêj a pir ji arîşe û pirsgirêkên navbera şaristaniyet û hovîtî, azadî û serberedayîtî, wekhevîxwazî û pawanxwazî de kiriye xureka riya pirr ji ewraz û nişîv a dîroka xwe.
Îran welateke tijî ji cur bi curiya rengan, dab û nerîtan, baweran, ziman, ol, reçelek û xelkên cur bi cur, ku ev sedeme jî bestênek bûye bo bihevrjiyan û têkiliyên aştîxwazane yên netewan û çandên cuda bi dirêjiya dîroka vî welatî de.
Bi fermînasîna vê pirrçandîtî û pirnetewîbûnê û pêberdakirina canê piloralîzma siyasî û çandî a mudern bi cismê wî welatê pirrnetewî, dikare bibe hêvênê giştgîrkirina demokrasiyê di deverê de ku dîktatorî û kevneparêziya zal, di vê deverê de li hember geşekirin û demokrasiyê de sekiniye.

Komara Îslamî vê pirrçandiyê ne tenê bi derfetek guncaw bo xurtkirina demokrasî û geşekirinê nizane, belkî bi gefek hertimî bo ser man û parastina desthilata reha û pawanxwaziya xwe dide zanîn û bi piştgirêdan bi tometên weke şerkirin ligel xwedê, kopalbidestiya biyaniyan, cudaxwazî û ... ,bikaranîna îşkenceyên sedsalên navîn, cezayê girtinên demdirêj û lidarvekirinê bi ser çalakên riya azadî û wekheviya mirovî de disepîne, heya ku rê nede derbek ji desthilata Welî Feqîh û serberedayiya melayan bikeve.
Di weha rewşek de, li cihê ku guh bo daxwazên çalakên siyasî ên netewên Îranê di warên siyasî, sivîl, çandî "zimanî û olî" û mafên mirovan de bigrin, weke tawanbarên zikmak û hêjayî cezayên çendqat ji wan tê nihêrtin. Di heyamê wan 32 salane de, salane sedan kes ji çalakên siyasî, çandî, sivîl ên wan netewan bo navendên ewlehî ên rejîmê hatine gazîkirin û ketine ber lêpirsîn û îşkenceyên cismî û derûnî, ku baskirin ji wan êş û azaran û îşkenceyên ku hevdem ligel sepandina cezayên giran ên weke lisêdaredan, hepsîkirina nerewa, cezayên civakî û abûrî bi dijî wan çalakan birêve diçe, beşek zaf ji nûçeyên bûyerên Îrana bin desthilata rejîma serberedayî a Komara Îslamî bo xwe terxan kiriye.
Hemû kesê/î re eşkere ye ku pêkhateya desthilata siyasî a hakim û pêwendiya wê bi dezgehên dozgeriyê ên nexweser û yasayên paremayî û pir ji cudahî ên Komara Îslamî, çavkanî û hêlûna cudahiyan dij bi hemû xelkê Îranê bi taybetî neteweyên Îranê ye ku her weke jinên Îranê di bin sitema çendqatî de ne. Li gor vê çendê, em endamên kempîna Berevanî ji Girtiyên Siyasî ên Netewên Îranê, di pêxema berevanîkirin ji mafên girtiyên siyasî ên netewan û piştevanî ji daxwazên rewa ên wan di Îranê de, li gor bendên carnameya cîhanî a mafê mirovan, xwazyarê hiloşandina hemû pêkhate û yasayên ciyawazîxwaz ên Komara Îslamî a Îranê û azadiya bê şert û merc a hemû girtiyên siyasî û hiloşandina cezayên lisêdaredana wan in. Em daxwazê ji hemû azadbîran, çalakên mafê mirov, kor û civakên navnetewî dikin bo berevanîkirin ji mafên mirovî ên girtiyên siyasî ên netewan di girtîgehên bixof ên Komara Îslamî de, piştevanê me bin. Kempîna Berevanî ji Girtiyên siyasî ên Netewên Îranê, serbarê şermezarkirina lisêdaredana çalakên siyasî, çandî û sivîl ên netewên Îranê, bala hemûyan ji bo aliyê metirsiyekê dikşîne ku niha gefê ji canê beşek zaf ji çalakên siyasî û sivîl di girtîgehên Komara Îslamî de dixwe, daxwazê ji hemû xebatkarên riya azadiyê û alîgirên mafên mirovan di seranserê cîhanê de dike ku bi xurtkirina hewlên xwe, pêşî ji vê siyaseta rejîma Tehranê bigrin ku dixwaze welatê Îranê bike mezintirîn girtîgeha siyasî a cîhanê bo netewên cur bi cur ên akinciyên wî welatî.

**Armancên kempînê**
Kempîna berevanî ji girtiyên siyasî ên netewên Îranê, hewlek e di pêxema ramalîn û nehiştina çemkên dijîmirovî weke: Girtiyên siyasî û tawanên siyasî di nav yasa û sîstemên yasayî ên Îranê û gihîştina bi rewşekê ku têde givaş û dûrxistina takekesan ji ber bîr û bawerên siyasî, olî û pêdagirî li ser zimanê zikmakî nemîne û tu kes bi wê hêcetê ve di mehkemeyan de li ser kursiya tawanbariyê nehê danîn.
Damezrênerên vê kempînê pêkhatine ji hejmarek ji çalakên sivîl û mafên mirov ji neteweyên cur bi cur ên Îranê; û çalkiyên wan pêkhatine ji:
- Hewildan bo komkirin û eşkerekirina navên hemû girtiyên siyasî di bêdadgehên Komara Îslamî de
- Hewildan bo eşkerebûna rewşa girtiyên siyasî ên netewên Îranê û siyasetên Komara Îslamî di wê pêwendiyê de
- Gihandina zaniyariyan bi kor û civatên navnetewî ên çalak di warê mafên mirov de û crêxistinên berevankar ên mafên girtiyên siyasî
- Hewildan bo xurtkirina givaşên navnetewî li dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê, bi armanca serbestberdana hemû girtiyên siyasî û vegerandina keramet û mafên pêpeskirî ên wan.

**Kempîna Berevanîkar ji Girtiyên Siyasî ên Netewên Îranê**

Hejmar 154, 6 'ê Adara 2011

# Derî Her Li Ser Paniya Xwe Dizivire

## Şiroveyek rexnegirane derheq "Deqa tewaw ya Nusxeya duyem a carnameya Bizava Kesk"



Mistefa Hicrî

Xwenîşandanên roja 14ê Şibata 2011-an û bi sedema rêveçûna wê di rojek cudatir ji hincetên fermî ên rejîmê û rêvebirina wê bê hebûna îzinnamê û herwiha eyannekirina nerazîbûnê ji aliyê serokên reformxwazan derbarê dana dirûşmên pêkhatşikên ji aliyê xwenîşanderan ve, hêdî hêdî ew nêrîna bal raya giştî bihêz dikir ku her çawa be di dawiyê de piştî nemana tu hêviyekê derbarê pêkanîna guhertinan li rejîma Komara Îslamî de û ezmûn wergirtin ji şoreşên 2-3 mehên berê yên Panaxa Afrîqa û welatên Erebî ên cîran ku bû sebebê paşekişîkirin û veqetiyana berçav ên dezgehên desthiltên dîktator û pejirandina daxwazên xelkê bêzarbûyî û herwiha bihîstina dengê neraziyên Îranî ku li rojên 14 û 20ê Şibatê ku ne ji bo pêkanîna guhertina di rejîmê de bû, belkî dirûşmên hilweşandina gişt rejîmê didan û bo gihîştin bi armancan han qurbanî jî dan, ger bi awayek gav bi gav jî be, dîsan serokên reformxwaz ên Bizava Kesk ketibine bîra radîkalkirina Bizavê û hevahengkirina xwe ligel daxwazên xelkê.

Lê belavkirina deqa tewaw a rûnivîsa dûyem a carnameya Bizava Kesk li roja Sêşemî, 23ê Şibatê ev yeka eşkere kir ku mixabin serokên Bizava Kesk ne guhdariya daxwazên ciwanên Îranî ên ku roja 14ê Şibatê hatine ser şeqaman, dikin û ne tu ezmûnek ji şoreşên vê dawiyê fêr bûne, lewma her niha jî li derdora mijara reformxwaziya xwe de bi awayek serşêwiyayî dizivirin û her li hizra rizgarkirina komara Îslamî di çarçoveya berçavgiritna yasaya bingehîn de dijîn û her bi vî awayî ye ku **" Li ser bingeha peymanameya hevpar ya xelkê Îranê, anku yasaya bingehîn li pey dabînkirina pêşerojek geş in bo gelên Îranê."** [1].

Ev menşûra ku bi **agehdariya pêşîn ya Mûsewî û Kerûbî**[2] hatibû belavkirin, bê ku îtraf bikin bi bêşiyanî û biserçûna (expire) nîzamê, hêj dixwaze bê hebûna sedeman esasa rejîmê bê kêmasî bizane û hebûna ew gendeliyên berfireh û hebûna ferq û cudahiyan û ew rojên reş ku rejîmê bo xelkê Îranê û herêmê pêk aniye, di "**serhildana heza tutalîstarî de, serberedayane û pawanxwazane li nav hinek ji berpirsên hikûmet de**"[3] bibîne.

Nemaze ewa ku li menşûrê de hewil hatiye dan ku bi anîna hinek hevokên xelkpesend û paradoksîkal wusa nîşan bide ku "**Rêvebirina gişt eslên yasaya bingehîn**"[4] deriyên bextewerî û azadiyê li ser xelkê vedike, bo mînak bal bidin hevokên jêr:

* "**Binpêkirina mafên bingehîn û yasaya welatiyan û bêhuermetîkirin bi keramet û hêjayîbûna mirovan ku xwe di eslên tekezkirî yên mafê mirovan de dibîne**"[5] di demekê li Komara Îslamî de, Hikûmet "**neynûka rastîn ya armanên siyasî yên neteweyek hevdîn û hevbîr e**" [6], gelo mirov dikare di hikûmetek han de li pey eslên tekezliserkirî ên mafê mirovan de bigere? Yan "**Bizava Kesk... bizavek e li doma tekoşîna xelkê Îranê bo bidestxistina azadî, dadperweriya civakî û cîbicîbûna desthilatdaiya netewî.**"[7] Niha bila ev du kesên rêzdar kerem bikin û bibêjin dema ku "**Ola fermî ya Îranê, Îslam e û mezheba wê Ceferî Esna Eşerî ye û ew esla hindê hebe, yanî bo heta heta guhertin têde pêk nahê**"[8], çawa azadî û dadperweriya civakî dê li çarçoveya vê madeya yasayî de dabîn bikin? Rûnivîsa menşûrê, de'iya vê yekê dike ku "**deng û daxwazên xelkê çavkaniya berheqiya desthilata siyasî ye**"[9], li demekê de ku li yasaya bingehîn de hatiye: "**Meclîsa Koamra Îslamî nikare yasayekê pesend bike ku ligel esas û hikmên ola fermî ya welat... dijberiya wan hebe.**"[10] Yan "**di pêkhatina sazî û navendên siyasî ku bi xwe bingeha pêkhatina civakê ye li ser bingeha têgihîştinek mektebî ye (îdeolojîkî) û kesên salih rêveberiya welat digirin stûyê xwe.**"[11]Pirsiyar eva ye ku ger deng û daxwaza nûnerên xelkê li ser vê bingehê ba ku yasayekê bipejirînin ku tevî esl û hikmên fermî ên welat dijberiya wan heba, yan ger xelk bixwazin pêkhatina bingeh û navend û dezgehên siyasî yên welat li ser bingeha îdeolojîk... nebin, ew dem diviya çi bê kirin? Gelo dê daxwaza xelkê bibe çavkanî?

Xala dawî ku ez dixwazin îşare pê bikim derbarê de'iyên dijberî hev ên navbera rûnivîsa Menşûra Bizava Kesk û yasaya bingehîn e ku hatiye: "**Di pêkanîn û pirçekkirina hêzên berevaniya welat, îmandarî û mekteb (îdeolojîk) wek bingeh hatiye liberçav girtin û ne tenê parastin û berevanîkirin ji sînoran, belkî... cehad li rêya xwedê û xebat di pêxema berfirehkirina desthilata yasaya xwedê bo ser cîhanê jî li stû digirin**"[12]yan yasaya bingehîn bi baldan bo ser **Îslamîbûna Şoreşa Îranê ku bizavek bû bo serkevtina hemû bindestan li hember desthilatrdaran, rêxweş dike bo domandina vê şoreşê li navxwe û derveyî welat de**"[13]

Bizava Kesk bi liberçavgirtina van xalan di yasaya bingehîn de çawa dikare rêçareyek bo "**Liberçavnegirtina berjewendiyên netewî û maciracûyiyên kesên xelkxapîner di pêvajoya hevkariya navnetewî... û dijî zalxwaziya cîhanî**" [14] peyda bike?

Ev xalên ke me îşare pê kir beşek kêm in ji wan hejmarên herî zêde ên mijarên dijîhev ku bi awayek rûçikî dest daniye ser lawazî û kiziyên rejîmê, lê dema ku ew rêçareyên van hemû kêmasiyan di "**Birêvebirina bê kêmasî ya gişt yasayên bingehîn de**"[15] dibîne, avek paqij dirêjîne ser destê gişt ew azadîxwazên ku tenê carekê yasaya bingehîn xwendibin û ji valabûna dirûşmên han tênegîjin.

Bi parastina vê yasayê qisekirin derbarê "**berfirehkirin û pêşxistina atmesfira medenî**" [16] û "**hikimdariya xelkê bo ser çarenivîsa wan bi xwe di hemû warekê de**"[17]û "**heqdarbûna gel û pêwîstiya wergirtina berheqiyê ji wan**"[18] û hevokên din ên wek yên han ku di rûnivîsa Menşûr de gellek bi berçavî tên xuyakirin, wek çêkirina rê ye li ser hewa ku ez bawer dikim jimara ew kesên ku dilê wan bo cîbicîbûna armanên han di çarçoveya yasaya bingehîn de xweş e, pir kêm in.

Di cihekê de jî ku rûnivîsa menşûrê li pey rakişandina kêmasiyên olî û netewî ye, her ev hevoka pê bes bûye ku dibêje: "**hewildan bo bidestxistina mafên yasayî û rêzgirtina exlaqî ji kêmasiyên olî û qewmî**"[19] ku gellek cihê mixabinî û nîgeraniyê ye, ji ber ku hevoka han li cihê gerentîkirina mafê grûpên han, zêdetir di hewla li stûyê xwe vekirina mafên binpêkirî ên wan e û dûr e ku bi tevgeriyanek han bikarin kêmasiyên olî û netewî bo beşdarîkirin di hikûmeta pêşîn de dilxweş bihê kirin.

**- Kurtiya basê:**

Ger di salên destpêkî ên pêkhatina bizava guhertinxwazî de , nemaze paş xwenîşandana xelkê piştî ragihandina encamên hilbijartina dewra dehem a serokkomariyê li Îranê, hinek kes dilê xwe bi karabûna yasaya bingehîn û encamdana çaksaziyê di rejîmê de xweş kiribûn, niha û piştî ew guhertinên kûr û berfireh yên siyasî li herêmê û nasîna zêdetir ya rejîmê ji hêla rejîmê ve, jimara ew kesan bi tewahî rû li kêmbûnê ye.

Serokên Bizava Kesk bi encamdana firt û fêlên han, nikarin di parastina Komara Îslamî de serkevtî bin û roj bi roj zêdetir ji bedeneya bizavê dûr dikevin, bizavek ku xesarên Îranê nek di rola tak û kiryarên takekesan de, belkî di tewahiya rejîmê de dibîne.

(1)متن کامل ویراست دوم منشورجنبش سبز ج ـ راهکارها2
(2)آغاز صفحه‌ی اول
(3)ویراست منشور، آغاز تولد جنبش سبز
(4)ویراست منشور، عدالت آزادی و برابری
(5)ویراست منشور، آغاز تولد جنبش سبز
(6)قانون اساسی جمهوری اسلامی ایران، مقدمه، شیوه حکومت در اسلام
(7)ویراست منشور، اهداف جنبش
(8)قانون اساسی، اصل دوازدهم
(9)ویراست منشور، حق حاکمیت مردم
(10)قانون اساسی، اصل هفتادو دوم
(11)قانون اساسی، مقدمه
(12)قانون اساسی، ارتش مکتبی
(13)قانون اساسی، مقدمه شیوه حکومت در اسلام
(14)ویراست منشور، تولد جنبش سبز
(15)ویراست منشور، عدالت، آزادی و برابری
(16)ویراست منشور، احترام به کرامت انسان...
(17)ویراست منشور، عدالت، آزادی و برابری

(18)ویراست منشور، راهکارها
(19)ویراست منشور، راهکارها



# Daxuyaniya Deftera Siyasî a PDK Îranê bi hinceta xwenîşandanên 14' ê Şibatê




**Hevwelatiyên xweştevî**
**Xelkê mafxwaz yên Kurdistanê!**
**Partî û saziyên siyasî**

Xwenîşandanên roja 14' ê Şibata 2011'an, li Tehran û çend bajarên din ên Îranê, bi mebesta piştevanîkirin ji tevgerên xelkê welatên Tûnis û Misirê, û serkevtina tex û qatên xelkê bi ser rejîmên dîktator, ji aliyê dezgehên tepeserkar ên rejîma Komara Îslamî a Îranê ve, bi tundî hat tepeserkirin û mîna nerîta herdem a rejîmê, kuştin û birîndarbûna çendîn kes û girtina hejmarek ji xelkê nerazî lê ket.

Di vê pêwendiyê de em bi hewce dizanin ku carek din hemû aliyan ji helwesta xwe a di warê wan xwenîşandanan û kiryarên rejîma Komara Îslamî de, agehdar bikin. Em weke siyaseta hertimî a xwe, piştevaniyê ji daxwaza azadîxwazane ya xelkê Îranê dikin û tawanên Komara Îslamî mehkûm dikin, herweha hevderdî û hevxemiya xwe tevî malbatên şehîdan nîşan didin û hêviya çêbûn û saxlemiyê bo birîndaran dixwazîn, daxwaz ji kor û komelên mirovdost dikin bi hewara destbiserkiriyan re biçin û îzin bi rejîma cinayetkar a Komara Îslamî nedin ku wan bikin goriyê siyasetên dijîgelî ên xwe.

Her wek berê ku me ragihandiye, di wê rejîmê de tu derfetek bo reform û guhertinan ku bi qazancê neteweyên Îranê be, tune ye. Tenê domandina xebatê take rê ye bo roxandina wê rejîma dîktator û serberedayî û pêkanîna sîstemek demokrat û federal. Van xwenîşandane û dirûşmên xelkê, rastî û dirustiya siyasetên me selimand. Bi liberçavgirtina rewşa siyasiya niha ya welatê me û pêvajoya bûyerên deverê ku armanca wan roxandina rejîmên dîktator û anîneserkar a sîstemek demokratîk e ku hemû pêkhateyên civakê ji xwe bigre.

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê, carek din piştevaniya xwe ji armanca xwenîşandanên roja 14'ê Şibata îsal û dirûşmên wan ku roxana rejîma dîktator a Wîlayeta Feqîh radigehîne û gihştin bi armancên hevkarî û hevxebatiya hemû hêzên siyasî û pêkhateyên rêberiyek demokrat û xweragir heya gihîştin bi armancên wê meşê, pêwîstiyek dîrokî ye.

**Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê**
**Deftera Siyasî**
**28'ê Rêbendana 1389'an a Rojî**
**17'ê Şibata 2011'an a Mîladî**

# Kemal Burkay piştî hilbijartinê vedigere Tirkiyê

## Ocalan êrîşî Kemal Burkay û Şivan Perwer kir



Sekreterê PSKê yê berê, Kemal Burkay diyar kir ku piştî hilbijartina giştî ya Tirkiyeyê, ew ê vegere vî welatî.

Li vê derheqê de gelek rewşenbîr, hunermend û alî, yek ji wan jî gorî malpera avestayê, Serokê hepskirî yê PKK'ê, bi tundî êrîşî ser Kemal Burkay û Şivan Perwer kirine û Ocalan gotiye: AKP dixwaze wan bîne Tikriyê û bi wan ticaretê bike û ger ew bi AKP re hereket bikin, wê qîmeta wan di çavên gel de pênc peran jî neke.

Paşan Burkay derheq bikaranîna wan ji bo polîtîkaya AKP û bona qelskirina siyaseta Kurdan, ew îdia red kir û got: Dibe ku niyeteke wiha ya AKP'ê hebe, lê ez û Şivan jî ne zarok in, jiyana me û kar û xebata me, berhemên me li meydanê ne. Çi li hundirî welat, çi li derveyî welat, em ji xwe bawer in. Yên ku siyaseta xwe gor daxwaza dewlet û hikûmeta Tirk qels kirine û dikin, ne em in û bila raya giştî ya Kurd ji bo me dilrehet be.

# Ji bo yekitîya kurdan pêşketinekî girîng;

## BDP, HAKPAR, KADEP û KCD bihevre civiyan û pêşniyaza hevkarî û yekêtiya di hilbijartinan de dinirxînin

Kongireya Civak a Demokratîk (KCD), bi armanca yekîtiya Kurdên Bakurê Kurdistanê, gavek balkêş avêt. KCD bi partiyên Kurd, BDP, HAK-PAR, KADEP û saziyên sivîl ên civakî re hevdîtin pêkanî û ji bo hilbijartinên 12 Hezîranê pêşniyaza diyarkirina namzetên hevbeş kir. Partiyên Kurd jî bi erênî nêzikê pêşniyazê bûn û ragihandin ku di hilbijartinê de hevkariyeke wiha wê riya yekîtiya netewî veke.

Berdevkê KCD, Cemal Coşgun, destnîşan kir ku em yekitiya Kurdan wek gaveke stratejîk dibînin. Herweha da zanîn ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd, niha firseteke dîrokî derketiye û ew dê bi armanca yekitiya Kurdan, wê hevdîtinên xwe bidomînin.

**Kişanak: Yekîtiya Kurdan ji bo me girîng e**

Hevseroka BDP'ê, Gultan Kişanak li vê derheqê de ragihand ku Yekitiya bo hilbijartinê, ne rojeva me ya sereke ye, lê em li ser wê yekê guftugo dikin ku di rêya yekîtiya Kurdan da, hilbijartin dikarin roleke çawa bilîzin. Em wek BDP'ê di tekoşîna ji bo mafstandinê de tevgera Kurdan a hevbeş girîng dibînin.

**Elçî: Cudatiyên di navbera me de hebûn, kêm bûn**

Serokê Giştî yê KADEP'ê, Şerafettin Elçi jî got hemû Kurd bi deh salan e doza vê yekê dikin Wî da zanîn ku ew pêşniyara KCD'ê ya yekitiya ji bo hilbijartinê gelek bi wate dibînin û Ji bo vê çi bikeve ser milê me, em amade ne ku bikin. Herweha got berê di navbera wan û xeta BDP'ê de cudahiyên programatîk hebûne, lê di demên dawî de cudahiyên wiha kêm bûne.

**Bozyel: Hilbijartin firseteke baş e**

Serokê Giştî yê HAK-PAR'ê, Bayram Bozyel jî ragihand ku "Yekitiyên ku nekevin jiyana rojane û nebin pratîk, wê hertim li ser kaxizan bimînin. Bozyel hevkariya hilbijartinê, wê karibe bibe firseteke bo yekîtiya netewî ya Kurdan û da zanîn: Em jî wek nûnerên KCD'ê difikirin ku dema çareseriya pirsgirêka Kurd hatiye. Lê divê hevkariya me li ser bingeha wekheviyê be û hemû cûdahî wek dewlemendî bên dîtin û ti alî xwe li ser aliyên din de nebîne.

**Nûkurd**










# Peyama Nesrîn Qasimlo bi boneya 8' Adarê



Peyama birêz Nesrîn Qasimlo bo Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê, bi boneya 8'ê Adarê, roja navnetewî a jinan.

Dostên birêz, xûşkên min ên xweştevî!

Îro em dest li nav destên hev ligel jinên cîhanê cejnê digrîn.

Herçend rejîma Komara Îslamî jiyan ji xelkê Îranê tal kiriye, pêgeha jinan jî heya asta koletiyê nizim kiriye, di vê navberê de bi taybetî jinên Kurd û netewe û kêmaniyên din, tûşî çarenivîsek dijwartir bûne.

Ew rewşa nebaş, hûn neçar kirine riya xebatê li pêş bigrin. Xebat bo bidestxistina mafên vekhev ligel nîva din a mirovahiyê, xebat bo mafê mirov û xebat bo azadiya welatê xwe, jêhatî, sidaqet û bihêziyê ji we dixwaze. Di vê riyê de, ez hevriyê we me û hertim ligel we dimînim.

**Nesrîn Qasimlo**
**24'ê Şibata 2011'an**

**Durûtiya Erdoxan!**

## Li Alman zimanzan, li Kurdistanê jî zimankuj!

Serokwezîrê Tirkiyê Erdogan, di gera xwe ya Almanyayê de dîsa bal kişande ser zimanê zikmakî. Ew bû mêvanê taybet ê televîzyona RTL û got; "Zarok, ji bo ku baştir fêrî Elmanî bibin, divê zimanê zikmakî jî fêr bibin. Ger zarok baş fêrî zimanê xwe yê zikmakî nebe, wê baş fêrî Elmanî jî nebin."

Herweha got: Vê yekê ne ez dibêjim, belkî zimanzan wisa dibêjin, 'bila destpêkê fêrî zimanê zikmakî bibin',

Erdogan her çiqas ku li Almanyayê behsa zimanzanan jî dike, lê li Kurdistanê jî li dijî perwerdehiya zimanê kurdî derketibû û gotibû, "Ji me perwerdehiya zimanê zikmakî nexwazin..."

**NÛKURD**

# Isaf: Îran di Efxanistanê de hevkariya Talibanan dike

Girîgorî Îsmît, yek ji berpirsên nîzamî ên Amerîkayê û chgirê Serokê navenda Fermandehiya hêzên "Isaf" di Efxanistanê de ragihand ku Îran çek û alavên teqemeniyê ji riya torên sersînor ve digijîne Taliban û perwerdeya leşkirî û piştewaniya malî û locestîkî ji Talibanan dike. Bi gotina wî, Îran dixwaze lîstikvanê sereke li Efxanistanê de be.

Bi nizîkbûna dema vekişyana hêzên hevalbend ji Efxanistanê û radestkirina kar û barên ewlehî ên navxweyî bi hêzên hikûmeta Efxanistanê, aloziyên zêde li wî welatî de çêdibin û hêzên Taliban çalaktir bûne. Li gor wî, Îranê berê Taliban bi gefek mezin li ser xwe dizanî, lê niha ji bo astengafirandin li pêşiya hêzên Amerîkayî bûye hevalbendê wan.

Navhatî ragihand ku bila Îran bizanibe ku neewlekirina Efxanistanê bi qazanca Îranê nabe.

# Demokrasî

N : Şehriyar Zerşinas     W : Siyamend Terbî

Beşa dawî



**Azadiya bîr û eyanê**

Tekez li ser vê yekê hatekirin ku demokrasî, bi sedema dijberiya deng û rikeberiya bîr û ramanan zindî ye. Nizama demokartîk di tev biyavên civakî de pêdivî bi fezayekî han heye heya îmkana bas û nîqaşa azad di navbera deng û bîr û rayên cuda de pêk bîne. Eyankirina bîr û raya şexsî û pirsyara ji çima û çavaniya kar û baran, dibe azad be û were tabkirin. Kiryarên civakî dibe li rêya belgeyên eqlî ve bihêne diyarîkirin û ne li rêya ferman û rênivênî ên bê vira û wêde. Tu kiryarekê îzna vê yekê nîne ku li derweyî cixiza rexneyan be û xwe ji pirsyar û nirxandinê bidize.

Ev yeke, ji bingehên demokrasiyê tê hisibandin ku tenê li rêya xebata rohî a berdewam di navbera hêz û hezên cur bi cur ên civakî de ye ku bîr û ramanên siyasî ên rast ji bo ava bûna dewletê li ser berjevendiya giştî tê avakirin. Helbet karekî han qet bi vê wateyê nine ku li vê rêyê ve hertim encamên herî rast bidestve tên, belkî zaftir berjenga vê yekê ye ku rêya demokrasiyê, rê nepîvaye û lewra pêvajoyekî bêdawî ji bo ceribîn û şaşiyan e. Di hemen demê de rêyek e ku bi hevkariya zêrevanî û rexnekirina hevber û berdewam, gerentiyekê bona destpêragehîştina qasekî berbiçav hêla herî rast a siyasî pêşkêş dike.

Di nizama demokratîk de, erkê çavdêrî û rexneya bi tenê li stûyê opozîsiyona parlimanî nîne, belkî di esil de li ser milê tev civatgehê ye. Azadiya zaniyarî û nûçeyan dibe ji bo her kesê/î vê yekê pêk bîne heya parek di avakirina bîr û raya giştî li stû bigre. Wateya bîr û raya giştî di hemen hal de bi vê wateyê ye ku di panahiya wê de, ne mijarên şexsî, belkî mijarên ku pêywendî bi jiyana bikom ve heye, dikeve ber berhevdanê. Lewra, tev hevwelatî û civatên ku xwe di warê hizrî de li gel pirsên giştî mijûl dikin û paşan wan hizran bi awayekî rexne û dijberiya di gel pêşniyaz û hevdengiya di civatgehê de tînin ber bas û li rêya wê ve bandorê li ser bîçimgirtina siyasî di civakê de dikin, bîr û raya giştî ava dikin. Bîr û raya giştî ku bi baldan bi zêdeyî bûna civatgehê, nikaribe yekdest be.

Azadiya bîr û ramnê di nîzamên demokratîk de, tenê bi wateya hebûna azadiyê û bawera şexsî nine, belkî pêş her tiştî bi wateya îmkana eyankirina ramanekî han e. Di rastî de tu kes nikaribe berahiya bîçimgirtina raya şexsî ji hevwelatiyan bigre, ji ber ku van bîr û bawran, biyav û cih nehêlane. lewra, azadiya bîr û bawerê di demokrasiyê de, hertim bi wateya îmkana eyankirina azad û bi wateyek dinê veguhastina vê ji çarçoveya şexsî ji bo asta giştî ye. Her bi vê sedemê, azadiya ramanê, bi mafê azadiya eyanê, azadiya nûçe û zanyariyan, azadiya weşan, civîn û civatan pêywendiyeke nequtkirî heye û bi wan mafan e ku mijariyetê peyda dike. Lewra di nîzamek siyasî de tenê demekê dikaribin bas ji azadiya rastîn a bîr û ramanê were kirin ku welatî bikaribin di bîçimgirtina hizrên giştî de beşadar bike.

Azadiya weşanan û jêderên giştî, tenê ji rêya hilgirtina sansora dewletî nahê garantî kirin. Binyatên giştî dibe hişyar bin ku pawanxwaziya ramanekê nemaze li ser civatgehê de zal nebe. Hevterîba vê, weşan û jêderên giştî dibe bi hevkariya amadekirina ayînnameyên hundirî ên demokratîk, di gel pawanxwaziya hizrî di refên xwe de xebatê bike. Ew kare îro û di serdemê înformatîk û pêywendiyan de girîngiyeke ewqas zêdetir heye.

Di nîzamên demokratîk de, her kesek ku bixwaze ji mafê azadiya raderbirînê bimifah be, dibe şansê destpêragihîştina bi zaniyariyan jî hebe. Navbeynkariya derheq kar û baran tenê demekê mumkin dibe ku hevwelatî ji çendî û çawaniya wê haydar bin. Nîzamek ku geşekirina hizrî a hevwelatiyên xwe bi girîng dihesibîne û wan weke xwediyên sereke ên hikûmetê dipejirîne, dibe wan ji biryarên siyasî ku di rê de ne haydar bike. Ew kare aliyeke dinê a azadiya ramanê di nizameke demokratîk de ye. Tev pirsên ku peywendî bi asta berjewendî û hezên giştî ve heye û bidestveanîna zaniyaryan ji van, pêşmercê navbeykariya siyasî derheq wan tê hisibandin, dibe di asta giştî de û li rêya kanalên azad yên nûçe û zaniyariyan, bikevine ber bas û nîqaşan.

Îro di civatgehên demokratîk de, bas ji desthilata bîr û raya giştî têkirin, vê desthilatê wateyek xincî vê yekê nine ku kiryarên siyasî ji cixiza berteng a desthilatdaran bihê derketin û li jêr çavdêriya bîr û raya giştî de bihê cihgirtin. Bîr û raya giştî dibe zal be heya bi hevhizriya bikom, rê li ser kedxorî û pawanxwaziyê bihê girêdan.

**Cudakirina dezgehên dewletê ji hev**

Azadiya Partiyan, azadiya bandorkirna opozîsiyonê û herwusa azadiya eyanê, wek berjenga bingeh û stûnên çavdêriya deselatê û çavkaniyên beşdariya di jiyana siyasî a civakê de hatin navbirin. Lê dibe bihê zêdekirin ku zêrevaniya rastîn a desthilatê nemumkin e, her nabe tev hêz û dezgehên dewletî di destê kes an binyateke koccî de be.

Zanayên siyasî ên serdemê rewşengeriyê li Ewropa, dane kivşê ku zêrevaniya bibandor a desthilat û hêza dewletî, tenê li rêya hêza dewletî bixwe cihê pêşveçûnê ye. Şaril Mitiskiyo, rojenhizrê Firensî ê sedsala 18'an û bavê menevî ê fêrkirina jihev cudakirina dezgehan, dewletê bi xwediyê sê kiryarên sereke tîne hisab: Kar û barên yasadanan, Kar û barên birêveberî û kar û barê dadwerî. Herwusa wî tekez kiriye ku tev destkevtên siyasî ên civatgehê dê ji dest biçin, eger gişt ew karane di destê kesekê yan organekê de kom bibin. Lewra her nîzamek siyasî bona gerentîkirina kiryarên azad ên xwe, dibe dezgehên dewletî di navbera organên cur bi cur û serbixwe de parve bike, bi awayekê ku ew organane bikaribin li hemberî hev, hevdu bixin jêr çavdêriyê û pêşiya pawankirina desthilatê bigrin.

Bi raya Mıtiskiyo, engîzeye cewhera parvekirina desthilatê li ser wê ceribînê bû ku her kesek xwediyê desthilata siyasî, bi awayekî berdewam tûşî hizra pîlana mifah standina xirab ji vê ye û her bi wê sedemê jî dibe desthilata siyasî berteng û bihê parvekirin. Fêrkirina Mintiskiyo, bertengkirina deselata selteneta reha û mutleq bû. Parliman weke berjenga pirseke siyasî di hember selteneta reha de, diviya dezgehên yasadananê ji çarçoveya deselata hakimê reha de derbixe û bi nûnerên xelkê re bispêre. Di pêvajoya demokratîzebûna civatgehên Ewropî de, bîr û raya deselatdariya xelkê hêdî hêdî zal bû û li jêr ronahiya vê de rolê seltenet û berheqiya dezgeha birêveberiya wê rengê xwe jidest da. Paşayan pirsa siyasî a xwe jidest dan û Parlimanan cihê wan girt. Bi vî awayî jihev cuda kirina dezgeha birêveberî û dezgeha yasadananê dijwartir bû û bi awayeke sunetî ji holê hatin rakirin û rolê opozîsiyona hundirê Parlimanê, weke berjenga unsorek nû bona ji hev cudakirina dezgehan xwe da eyanê. Lê ruha parvekirina dezgehên dewletî di navbera dezgehên sêalî ên cihê basa Mintiskiyo de, heta îro li destpêka sedsala 21'an de jî, li ser hizra siyasî a demokrasiyên rojavayî de zal e. Helbet di zaf demokarsiyên modern de ku aliyê Parlimantarîstiya wan zal e, ji ewa ku partî an partiyên lihevhatî ên xwediyê piraniya parlimanê, bi awayekî hevçax pêkhînerên hikûmetê ne, biyavên yasadanan û birêveberiya dinê di gel dîwarê çînê nahêne berhevdan û cudahiya personêlên van du biyavan bi awayek kilasîk êdî nemumkin e.

Lê di demokrasiyên ku aliyê serkomariya wan zale, valahiya navbera dezgehên birêveberî û yasadananê kûrtir e û Parliman gorekî hikûmetê xwediyê serbixweyiyek zaftir e. Lê eva ku di her du awayên demokrasiyên han de girîngî heye û di karê jihev cudakirina dezgehên dewletî heya niha hêz û şiyana xwe herwusa parastiye, her ew jihev cudakirina aşkera ya dezgeha dadweriyê ji binayatên dinê ên dewletî ye. Zêdebarê vê yekê, biyava serbixwe a dadweriyê di pêvajoya dîrokî a xwe de, xwediyê deselateke zaftir e ku mînaka wê dikaribe di dadgehên bilind nemaze pêragihîştina bi dijberên çavkanîgirtî ji şiroveya yasayên bingehîn di van welatane de mêze bikin.

Dewreyîbûna hilbijartinan di welatên demokratîk de jî, bi awayekê hilgirê unsorekê ji ruha jihev cudakirina desthilatê ye. Bi vê wateyê ku desthilat ne tenê di nava binyatên dewletî, belkî herwusa di warê zemanî de jî tê parvekirin. Di hin welatên demokratîk de, posta serkomariyê tenê ji bo du dewreyan bi kesekê tê spartin, yan Parliman ji bo çar salan tên hilbijartin. Ew karane, hizûra bihêz a bîr û raya giştî di kar û barên danana bijardeyên siyasî de nîşan dide, karek ku bixwe berjenga beşdariya xelkê di parvekirina hêz û çavdêriya desthilatê de ye. Ji têdîtinên serê de, em dikaribin bigihîjin vê encamê ku îro di demokrasiyên modern de, eger çi jihev cuda kirina hêzên dewletî bi awayê kilasîka a wê êdî tune, lê hatina unsirên nû weke hilbijêr, bîr û raya giştî, hêzên siyasî ên rêkxistî di heyeta partî û saziyan û hebûna opozîsiyonê de, tirsa pawankirina desthilatê di van civatgehan de wêde dide.

Tevahiya wan hêzane di tevlîheviya di gel dezgehên sêalî ên dewletî, pêrewê eslên bingehîn ên yasayên bingehîn in û dibe ferman û destûrên wan birêve bibin. Bi giştî hemû li jêr zêrevanî û çavdêriya hêz û binyatên dinê de cih girtine. Bi vî awayî, hêza dewletî di demokrasiyên modern de, li rêya sîstimek tevlîhev li ser bingeha berbend û pirsgirêkên hemberî hev, hatiye bertengkirin. Nobedarê wê sîstima tevlîhev, her nûrma desthilata yasayê wek berjenga esleke bingehîn a dinê ya demokrasiyên modern tê hesibandin.

# Biryarnameya dijî Qezafî, Gavek bêmînak û Hişyariyek bi dîktatoran

Civata Giştî ya rêxistina NY, Piştî dahûrandin û nirxandina cinayet û binpêkirina mafên mirov ji aliyê rejîma Qezafî ve, endametiya Lîbiyê li vê saziya navnetewî mandel kir. Ew biryar bi erêya 192 welatan hat pesendkirin. Ev gava Civata Giştî a NY, li cihê xwe de bîmînak e, ji ber ku Lîbî yekem welat e ku ji ber binpêkirina mafê mirov rastî gavek bi vî awayî hat, ji hêla din ve jî hişdarek mezin e bi dîktatoran.

Hîlarî Kilîntona Wezîra Derve a Amerîkayê jî got: Ev biryar nîşana wê yekê ye ew dewletên ku çekên xwe ber bi rûyê xelkê xwe digrin, cihê wan di vê şêvrê de nine.

### Obama: Qezafî dibe biçe, nexa hemû bijarde li rojevê de ne

Obama ragihand ku civaka cîhanî ji kiryarên tund û tûj li dijî xelkê Lîbiyê bi hêrs hatiye û carek din ji Qezafî dixwaze ku ji desthilatê vekişe. Wî herwha li dor egera êrîşa leşkirî li dijî Lîbiyê da zanîn ku tund û tûjî li Lîbiyê de divê raweste, nexa hemû rêkarên leşkirî û neleşkirî li halê nirxandinê de ne.



### Qezafî: Xelkê Lîbiyê ji min hez dikin

Qezafî bersiva cîhaniyan da û got ku xelkê Lîbiyê hez jimin dikin, wêneyê min jî naşevitînin û bi solikan lê naxin!!, lê şaromendên Lîbiyê gotinên wî ret kirin û ew bi virok û direvîn nav kirin û gotin ku ew li xeyalan de dijît û hewcehî bi derman û tedawiyê heye.

### Înterpolê hukmê girtina Qezafî û 15 kesên nêzîkî wî da

Polîsê navnetwî, hukmê girtina Qezafî û 15 kes ji nizîkên wî derkir. Ew hukim li pey biryara dadgeha Cenayî a navnetewî li dor şopandina Qezafî bi tawana encamdana cinayetên cengî û biryarnameya Şêvra ewlekar ya NY li dijî rêberê Lîbî û zarok û nizîkên wî hat weşandin. Li gorî biryarnameya Şêvra Ewleka, serkutkirina neraziyan li Lîbiyê de weke cinayetên dijî mirovahiyê hat hesibandin û û dibe bo dadgeha cenayî a navnetewî bihê şandin.

## Rojev

# Rejîma Îranê riswatir ji her demekê



Selîm Zencîrî

Komara Îslamî a Îranê yek ji wan rejîmên dîktator, dijî mirovî û serberedayî ye ku li midehê sê dehsalên desthilatdariya xwe de, ji ber siyasetên nerewa, şerxwazane û pawanxwazane ên xwe, nav û pêgeha Îranê xirab û rola wê jî di nav hevkêşeyên siyasî de lawaz û bi tehrîm û dorpêçên giran yên navnetewî re berbirû kiriye. Rejîma Îranê li rabûn û rûniştin û riftarên xwe yên siyasî û dîplomatîk de tu yek ji pîvan û pirensîpên dîplomatîk û heta exlaqî jî berçav negirtine û remekî û serberdayiyane pêşde diçe. Karnameya reş û tijî şaşî yên dîplomasiyê ku encama kar û kiryarên nerewa ên rejîmê ye, bi taybetî li heyamê wan çend salên dawîn de, eyankerê vê rastiya haşahilnegir in.

Berdewamiya siyasetên fitnegêrane û kirîzafirîn ên rejîmê li asta navnetewî ji hêlekê û ji hêla din ve jî riftar û kiryarên dijîmirovî û hovane û peyrewkirina rêkarên şaş û dûr ji hemû yasa û pirensîpên mirovî li dijî gelên Îranê wusa kiriye ku rûçikê rejîmê li asta navnetewî de roj li pey rojê reştir û xirabtir bibe; bi watayek din li vê dawiyê de asta riswayî û mehkûmiyetên navnetewî yên rejîmê bi qasekê eşkere û berbiçav in ku êdî haşa û înkarkirina wan nemumkin e.

Bo mînak ger em li vê yek meha dawîn de riswayiyên siyasî yên herî girîng ku li ser eniya reş a rejîmê hatine dakutan, bînin ziman; bê şik wê demê dê ast û çarçoveya şermezarî û riswayiyên rejîmê derkevin ku sînorên navnetewî jî bezandine û çiqas li nav hevkêşeyên siyasî de ew hitbar û giraniya rûyekî ya mayî jî, jidest daye. Çunku roj nine ku li asta navnetewî de bi sedemên cur bi cur nehê şermezar û riswa kirin.

Piştî îdama Zehra Behramî, jina Îranî-Hulendî ji aliyê rejîma Îranê ve, Hulendê balyozê xwe bi awayê demkî ji Îranê vekişand û hemû pêwendiyên xwe jî bo midehekê bi Îranê re rawestand û Wezîrê karê derve yê Hulendê jî rejîma Îranê bi ''Hov''wesifand. Serbarê mehkûmkirina navnetewî ya Îranê li dor îdama vê jinê, daxwaz ji Îranê jî hat kirin ku bilez hukmê îdamê rawestîne; eve bû ku me dît bona nîşandana nerazîbûna xwe li hember vê kiryara Komara Îslamî de, her 27 welatên Ewropayî beşdarîkirin li merasîma 32'mîn salvegera –şoreşa Îslamî- tehrîm kirin, ev biryara YE ji aliyekê û nerazîbûnên navxweyî yên Îranê jî ji hêla din ve merasîma îsal kirine taltirîn rê û resim ji bo Komara Îslamî li dîroka xwe de.

Her piştî vê bûyerê, Dewleta Sinigal li Afirîqayê de piştî nîqaşên dîplomatîk yên zaf û ji ber desttêwerdanên Komara Îslamî li wê Panaxê û bi taybet li wî welatî de hemû pêwendiyên xwe ên siyasî û dîplomatîk bi Îranê re qutkirin û Îran tawanbar kirin ku ji şoreşiyên cudaxwaz yên Sinigalê piştewaniya madî, leşkirî û locestîkî dike. Ev helwesta Sinigalê jî piştî helwesta Nîciriye û Gambiyayê li dor destbiserde girtina 13 kantînêr sîlahên Îranî hat ku ji bo opozîsyona wan welatan dihat şandin û çend endamên payebilind yên Sipaha Pasdaran jî girtin ku destê wan li wî karî de hebû. Lewma wan jî têkiliyên xwe bi rejîma Îranê re qutkirin û dadgehaiya wan girtî û tawanbaran jî dan destpêkirin. Komara Îslamî li hember serbestberdana endamê xwe yê Sipahê û destpêkirina gerek nû ji pêwendiyan, amade bû ku wamek 1 mîlyard dolarî bide Nîciriyê, Lewma bi van kiriyaran, stratejiya siyaseta derve a rejîma Îranê bo nifûz û qahîmkirina cîpiyê xwe li rojavayê Afrîqayê û handana wan bo xebata hevpar dijî Amerîkayê serbarê mezaxtina bûtce û têçûyek zaf, gihîşte binbestê û dîwarê ku xîmê wê xar hatibû danîn, hiloşiya û mîmarî û hostatiya Komara fitneçî çû bin pirsiyarê û şikest û şermezariyek din a siyasî li karnameya wê de hat tomarkirin.

Paşan li kiryarek din a rûreşane de, rejîmê du şaromend û nûçegihanên Almanî bo midehê çend mehan destbiser kiribûn û tometa sîxorî ji wan re dabû, lê bi sarbûna pêwendiyên Alman bi Îranê re, neçar ma ku dîsan puanek din bide û ew serbest berdan.

Li doma riswayiyên siyasî ên xwe de, rejîmê li dema xwepêşandanên xelkê bajarên Îranê de Serkunsola Îspaniyayê li Tehranê bo midehê çend demjimêran destbiser û lêkolîn jê kir, lê paşan bi gefên dewleta Îspaniyayê, neçar ma ku serbarê serbestberdanê, lêborînê jî ji Îspaniyayê bixwaze.

Lê riswayî ên girîngtir piştî vê hatin ku pêvajoya serkut û pêpeskirina mafên mirov li Îranê de ji aliyê rejîmê ve bileztir bû û li xwenîşandanên aram û mafxwazane de çendîn kes hatin kuştin û bi hezaran kes jî destbiser û li girtîgehên Komara Îslamî de li bin îşkenceyên hovane de dijîn, lewama ew dijkiryara komara Îslamî bi nîsbet xwenîşanderan, bû sedema şermezarî û mehkûmiyeta cîhanî bo rejîmê; û piştewan û dilgermî û enerjiyek jî bo azadîxwazên Îranî. Her li vê derheqê de DYA, YE û NY û gelek kom û saziyên navnetewî ên berevankarê mafên mirov riftarên hovane yên hêzên rejîmê bi tundî mehkûm û şermezar kirin û daxwaz ji rejîmê kirin ku rêz ji mafê xwenîşanderan bigre û deng û hawara azadîxwaziya xelkê jî bibihîze û girtiyên siyasî serbest berde, ji hêla din ve jî biwêrî û cesûriya xwenîşanderan pîrozkirin.

Bi giştî roj nine ku bank yan nawendek ser bi rejîmê nekewe ber tehrîmanên navnetewî li dor bernameya navikî a rejîmê; lê niha êdî mafê mirov jî ketiye rojevê û vê dawiyê navê 80 kes ji berpirsiyar û karbidetên payebilind yên Komara Îslamî li dor pêpeskirina mafên mirov, kuştin û îşkenceya hevwelatiyan li Îranê de dikewin nav lîsteya reş a Birîtaniya û Yekêtiya Ewropayê, ku eva jî riswayiyek din e bo Komara cinayet afirîn a Îslamî a Îranê. Li asta navnetewî de jî em dibînin ku zext û givaş roj li pey rojê li ser rejîmê zêdetir dibin û rol û desttêwerdanên Komara Îslamî li welatên weke Efxanistan, Îraq, Lubnan û ... tên dîtin û maytêkirin û hewlên bilarêdebirin û bandordanana li ser şoreşên li welatên Rojhilata Navîn weke Misr, Behrên û Yemenê û mifah standin ji wan nearamiyan bona pêşvebirina meremên pîs û mirar yên xwe ji aliyê Komara Îslamî ve berdewam in û dixwaze tesîr û bandora xwe li ser bûyer û guhertinên Rojhilata Navîn bike, lê bêhay ji wê ku hemû kar û kiryarên wê li jêr çavdêrî navnetewî û bi taybet Amerîkayê de ne; ku gotinên Hîlarî Kilînton, Wezîra Karê Derve ya Amerîkayê jî li dor rol û riftarên Komara Îslamî eyankerê vê rastiyê ne.

Bi giştî li encama van siyasetê nerewa û dîplomasiya şaş û kiryarên dijî mirovî, serbarê mehkûmiyet û riswayiyên siyasî û dîplomatîk yên rejîmê li asta navnetewî de, veriyan jî ketiye nav karbidest û hêzên rejîmê û her roj hejmarek vedigerin hembêza gel û agirê serhildanê jî geş û gurrtir dibe, lê renge ev bûyer û riswayiyane ji ber bêşermî û bêheyayî a rejîma terorpîşe, serkutker û serhişk, carê ji ber serkeliyê hay û hest bi tesîr û bandor û çarçoveya berfireh a wan riswayiyan nekin, lê kirîz û binbesta dîplomatîk a rejîmê ewqas xurt û girovera tehrîm û şermezariyan jî ewqas teng bûye û hewce dike hina jî tengtir bihê kirin daku êdî mecal û fersenda nefeskêşanê ji Komara Îslamî bistînin, û heta hay ji xwe hebe, êdî geleg dereng maye û tu rê û alavek nabe ku bikare xwe pê biparêze yan xilas bike, meger eva ku weke dûpişkê bi xwe vede.

# Madeyên bêhişker ên kîmyayî,
## gefek mezintir li ser cismê civakê



Ceifer Mubeşirniya

pêvajoya îtiyadê yan gîrodebûn bi madeyên hişber di Îranê de roj bi roj di xurtbûnê de ye û hewlên bo pêşgirî û kêmkirina wê xesara mezin di civakê de jî nek her nehatine dayîn, belkî her çend heyamekê sîstema şaş û hizrên dujminkarane ên siyasiye desthilatdarên Komara Îslamî, fitneyeke siyasî di pêxema dirêjkirina temenê desthilata xwe de birê dixin û raya giştî berxwar û bi larêda dibin; ger xelik jî ji wan fend û fêlên rejîmê têgihîştibe, dîsan bi fitneyên xwe xelkê dikin goriyên sereke ên pîlanên xwe û bi vî awayî xelkê mijûl dikin û xwe ji gelek pirsên girîng ên civaka me vedidizin, ku girîngtirînê wan, pirsa îtiyadê ye.

Di encama vê nepirsîn, xwe xafilandin û xelik xapandinê de di çarçoveya maşkaneyên siyasî û qala -yekîtiya netewî- "li gor nêrîna Komara Îslamî", ji aliyê desthilatdarên xwesepandî bi ser civaka me de, tê dîtin ku pêvajoya îtiyadê bi arasteyek pirr metirsîdar de dimeşe.

Şêwaza bikaranîna madeyên hişber ji aliyê ciwanan ve di Îranê de, ji madeyên sunnetî ên hişber weke Tiryak, Heşîş û Hiroînê û ...ve, ber bi madeyên kimyayî ên hişber weke "mitamiftamîn" ku di Îranê de bi Şîşe yan Kirîstal binav bûye, herweha madeyek din a bi navê kirak, hatiye guhertin. Madeyên han destçêkirî ne wate giyayî ninin û pirr bihêz in û di demek kêm de bi tewawî mirovên bikarîner moitad dike û li ser sîstema esebî a mirovan tesîrek zaf dike. Madeyên han bi awayekê di civaka Îranê de belav bûne ku li gor vekolînan, niha di bazara mesrefa welat de di heyamê 5-6 salan de gihîştiye 15 ji sedî, ewa jî di halekê de ye ku Hiroîn bi 40 sal derbasbûya bikaranînê di Îranê de, 21 ji sedî a mesrefa bazara madeyên hişber di Îranê de ye. Eva jî bilezî û xurtbûna pêvajoya bengdarbûna bi madeyên nû ên kîmyayî yan jî şîşeyî li hember madeyên din ên sunnetî de nîşan dide û zengila metirsiyê di guhê her Îraniyekê de lêdixe.

**Sedemên bikaranînê**

Di rewşek normal de dema ku mirov hest bi xweşiyekê bike, beşa xwarê ya mejî ritûbet dike û wê xweşiyê bo beşên din ên leş belav dike, madeyên hişber jî yek ji bihêztirîn tehrîkkerên vê beşê ne û heza dubarebûna bikaranîna wê zêde dibe. Lê di heman dem de jî beşa wergirtina mejî bêhêz dike û hêdî hêdî jinav dibe, êdî ji bo kesê moitad tu tiştek girîng nine û hizir ji tu pirsek jinayê nakin, di encam de ji mirovahiyê dûr dikevin. Erzaniya nirxa wan madeyan jî sedemek dine ku di heyamê yek sal de, yek kîlo şîşe ji 120 Milyon tûmenan ve bo 10 heya 15 Milyon tûmenan di Îranê de daketiye. Eva jî nîşaneyên handanek pêtir a ciwanan e ji aliyê rejîmê ve. Bidestxistina wan madeyan bi bê pirsgirêk û bi sanahî çêkirin û bikaranîna wan madeyan bi awayek zaf sade û rihet e, ku di dema bikaranînê de tu bêhnek jê nayê û bi tu awayekê derdor jê haydar nabin, berevajiya madeyên din ên giyayî yan sunnetî ku di dema bikaranînê de derdorên xwe ji bêhnê dadigre, ewa jî hin sedemên din ên bilez belavbûna wan madeyên nû di nav ciwanan de ne.

Madeyên han heza xwarinê pirr kêm dikin û ji bo kêmkirina kêş "wezn"a xwe, beşek ji ciwanên ku ji destê qelewiyê de dinalînin, wan madeyan bikartînin. Sedemek din jî, tê gotin ku madeyên han hêza cinsî zêde dikin, ew yek ji aliyê pijîşkên vî warî ve hatiye pejirandin, beşek ji ciwanan jî bi wê armancê wan madeyan bikar tînin. Lê bi gotina pijîşkeke navenda dermanî a Piragê, bikaranîna zaf ya madeyên hişber ên şîşeyî dibe sedema hewcehiya zêde a cinsî ku ewa jî nenormal e û metirsiyek mezin e li ser kesê bikarîner. Lê hemen pijîşk serbarê pejirandina wan sedeman, bêkarî û bêhîvî bûna ciwanan ji pêşeroja xwe, bi serekîtirîn û girîngtirîn sedemên gîrodebûna ciwanan bi madeyên hişber dizane.

**Çend mînakek ji metirsiyên madeyên şîşeyî**

Heyamê moitadbûn bi wan madeyan ji 6 heya 7 mehan derbas nabe, ger kesek ji wan bikarîneran jî bikare xwe bibaşî rabigre û moitadî zû ji rûyê wî diyar nebe, egera tûşbûna wî bi celteya mêşk pirr zêde ye. Çimku bi gotina pijîşkên vî warî, janeserên pirr rijd, lêdana bilez û tund ya dil, sergêjbûn, bilindbûna givaşa xwînê, kelijîna leş, dilkut, kêmxewî, xemokî, lerizîna destan û çendîn nîşaneyên din ku li ser demarên mejiyê bikarîner tesîr dike û dikare bibe sedema celteya mejî, dil û di encam de mirina wî/ê. Hin ji bengdarên bi awayê tezrîqî û ji riya derziyan ve wan madeyan bikar tînin û carna wan derziyên xwe bi emanet didin hev û karê tezrîqiyê pê dikin; Ewa jî metirsiyek zaf a belavbûna nesaxiyên îdz "HIV" û hepatît ê bi dîv de ye. Metirsiyek din di wê derbarê de a jinan e ku niha jî di Îranê de jiber meselên namûsî amara jinên moitad ne tê eşkerekirin û ne jî jin hazir bi danpêdana wê rastiyê ne. Di encam de zêdebûna moitadên jin û veşartina wan û pêranegihîştin, karesatek mezin di pêşeroja civaka me de ye.

Lewma moitadbûn bi madeyên nû ên hişber weke Kirak û Kirîstal ê, lezatiyê dide zêdebûna hejmara bengdaran di demek kêm de û nuxsankirin û jinavbirina beşek ji enerjiya civakê û di encam de goriyên zêde û pêşneketina vicakê.




# BER KÊR Û ŞÛRAN

Mehmet Çobanoglu



*Lê lê lê dayê keça bêbext û reben dan ber kêran*
*Lêdan dixwe bav û biran, ap û xalan hemû mêran*
*Hewariya min Yezdanê jor, Xweda'ê alemê re*
*Ev çi afete ser jinan, mêr xwe dişibînin şêran*
*Lê lê lê dayêkê keça belengaz dan ber keviran*
*Xwîna gewez jî dikişe û hire hir ket nav miran*
*Tu fersend nadin keça qemer piçek jî rabe ser pê*
*Ev çi bîryar e û kevneşopî ye ji bo hemû jinan*
*Ax rebenê birîndara bêr û kêrên, bav û biran*
*Hêstirê çavên te dikişe wek ava nav newalan*
*Qet guneh te tune bi qasî pirîsk-e misqalekî*
*Ax ev çi belengazîye tu ketî ber kêr û şûran*
*Keçê bextbireşê tu tim berdestiyê bav û biran*
*Tu berendama hêviyê û berdêliya van mêran*
*Jiyana te qut kirin tu bi hêdî hêdî dimiri*
*Ji bo te azadî tune mîna hemû qîz û jinan*
*Te nehiştin dibistanan, ax tu nebûyî xwendevan*
*Qîz û jin û hemû pîrek bûn boraqên feodalan*
*Mêrên bêfedî mêrên zorbaz û hemû mêrên kujer*
*Bav û birayên serhişk, şêx û axan hemû karsazan*
*Lê lê lê dayîkê keça qemer nale nal dinale*
*Lidan dixwe li mêran ber kêr û şûra, gulan e*
*Ev pergala faşîstane ev dewleta zexelan e*
*Lêbelê rizgariya bo keç û jinan şoreşî ye*

# 8'ê Adarê û bindesiya jinan



Perî Reşîdiyan

Em li demekê de pêşwaziya 8'ê Adara îsal dikin ku rewşa cîhanê li gel salên berê hin cuda ye.

Pêla berxwedana gelan li welatên Erbî serî hildaye. Gelên li bindestê zulm û zoriyê îro berxwe didin û dijî zulmê xabatek pirr dijwar dimeşînin.

Eger heya niha li welatên Erebî de mafên miravahiyê tiştek ne diyar bo, lê îro em dibînin ku mêr û jinên wan welatan daxwaza mafên serbestî û azadiyê dikin

Li nav refa neraziyan de mirov jinan jî dibîne ku çawan bi dilek pirr ji evîn ve daxwaza mafên xwe dikin.

Rewşa jinan di gelek welatên cîhanê bi tayebtî welatên Rojhalata navîn pirr xirab e.

Jin li wê deverê de li gelek mafên xwe bêbeş bûne, weke mînak, mafê xwandin, karkirin, biryardan li ser jiyana xwe, hilbijartina hevjî, mafê dangdanê û xwe berendamkirinê.

Li walatê Erebistana Siûdî biryarek nû hatiye dayîn ku jin dikarin li hilbijartinên şaredariyê de dengê xwe bidin û herweha nikarin xwe kandîd bikin. Li welatên din ên Erebî de rewşa jinan bi kêm yan zêde her wek jinên Erebistana Siûdî ye.

Roj û salên li pêşiya me de dê gelek guhertin li wan welatan de çêbin. Gelek fakter hene ku bandor hebûne li ser rewşa jinan li wan walatan de, fakterên weke, ol, hizra eşîretî, paremana hizr û bîra regeza nêr bi ser regeza mê de, nexwendewarî û gelek fakterên din.

Zor girîng e ku jinên wan welatan bi hevre bo pêşeroja xwe bixebitin. Barê giran li ser milên jinan e, lê mêrên rewşenbîr û zana jî dibe li wê xebatê de destekê bidin jinan. Pêşeroja her walatekê girêdayî pêşkevtina jinan li nav civakê de ye.

Li Iranê her li roja destpêka dizîna şoreşa gelaên Iranê li sala 1357 (1979) 'an ji aliyê melayên kevneparêz ve, jin bûn yekimîn gorî.

Komara Îslamî a Iranê bi hemû dam û dezgehên xwe ji bona tepeserkirina jinan hewla xwe daye û dide. Her li yasaya bigehîn a Komara Îslamî ve bigre heya yasayên sîvîl, mirov nikare bendekê di yasayan de bibîne ku bibê cudahî di navbera jin û mêran de bas ji mafên jinan bike, ger tiştek wiha jî di yasayên rejîmê de hatibin, di dawiya her bendekê de tekez li ser liberçavgirtina îdeolojîka xwe kirine.

Weke gelek caran hatiye gotin jina Kurd li nav yasayên Iranê de li gelek cihan de xedir jê hatiye kirin, her ewa ku Kurd e, sunnî ye û tawana herî girantir li ber ewê ku jin e, her tim êrîş lê tê kirin. Pir in ew keç û jinên Kurd li zîdanên Komara Îslamî de ku tenê jiber hindê ku Kurd in hatine girtin û gelik îşkence û sivikatî bi wan tê kirin.

Ligel hemû bêmafiyek gelê Kurd li Kurdistana Bakûr, lê bûna 14 Şaredariyan di destên jinan de li wê parçeya Kurdistanê, nîşaneya vê yekê ye ku jinên Kurd ger derfet hebin, dikarin di hemû urgan û navendên îdarî û biryardanê de beşdariyê bikin û birêveber bin.

Gelek kes sîstema kote ji bo jinan bilîtek belaş dibînin û ser wê baweriyene ku jin dibe hewla xwe bidin ku li gel mêran rikeberiyê bikin, lê em dizanin ku li ber fakterên wek urf û edet, ol û paremana civakî, rêjeya jinan li nav partiyên siyasî de kêm bûye. Li ber wê hindê jin nikarin li hemberî mêran de rikeberiyê bikin. Sîstema kote dibe sebeb ku rêjeya jinan li nav organên siyasî û biryarder de zêde bibe. Lewma



partiyên Kur bi diyarîkirina sîstema kote dikarin pêtir bala jinan ji bo nav partiyên sîyasî de bikşîne. jiberku demokratîbûn û pêşkevtina her partiyek li meydanpêdana bi jinan û pêtirbûna rêjeya wan di organên biryarder ên wê partiyê de diyar e.

Hebûna jinan li nav organên biryarder de gelik gring û pêwîst e. Çimko civak pêkhatiye ji jin û mêran, herweha mêr tenê bi serê xwe qet nikarin hemû pirsgrêkên welat û civakê çareser bikin.

Biryarên ku gorî nêrina hevpar a jin û mêran tên dayîn, hertim bersiva arîşeyên civakê didin. Mirov dikare walatên Ewropayê û bitaybetî welatên Îskandînavî weke mînak bîne ziman.

Bi wê hêviyê ku pêvajoya guhertina dewlatan li cîhanê bi giştî û li Rojhilata Navîn bi taybetî, êdî bindestî û bêmafiyê ji bo jinan bi xwe re neîne. Bila salên li pêşiya me, bibin salên wekhevî û rêzgirtin ji mafên mirovayetiyê.

# Zextên li hember jinan



Sefye Xalidî

Hewcehiyên sereke ên mirovan, xurekên derûnî, hizrî û cesteyî ne. Di her sê waran de jî li hember jinan xemsarî hatiye kirin û Jinan di dirêjahiya dîrokê de di wan waran de muhtac bûye. Di rastî de jinan car darê zêdexwaziyê û car jî darê kêmxwaziya xwe xwarine. Ewa jî jiber nasnekirina cih û pêgeha wê a rastîn e.

Siroşta Jinan li ser narînî û hûrbîniyê çêbûye, wate di kar û barên xwe de hunermend e ku her karek weke erk bo bihê diyarîkirin, bi baştirîn awa birêve dibe. Mezintirîn neheqî derheq jinê ewe bû ku erkê mêran ji jinan hatiye xwastin, di halekê de ku siroşta jinê tiştek din e.

Di vî serdemî de edet û rewişt mîna ewrên li ber bayê hertim di guhertinan de ne. Xîret, şeref û mirovahî lawaz e û jin mîna alavên ticarî di xizmeta mêran de ne. Di welatek pirrnetewe mîna Îranê ku kultorên cuda cuda di hundirê xwe de cih kirine, netewa Kurd bi kultura xwe ya Kurdî rêz li kesayetiya jinê digre, lê dîsan bi awayekê berfireh di civaka îslamî ya Îranê de kesayetiya jina Kurd û netewên din pir bê qîmet in û ew civaka pirr çand û reng, ji dutîreyî, hejarî, bê edaletî û biçûk dîtina mirovan dinalîne.

Mirov nikare hemû derd û kederên ku jinek Îranî dibîne bi nivîsekê yan gotinekê bîne ziman. Lê bo mînak, niha li gor amarên nefermî nizîkî 60 hezar jin di Îranê de madeyên hişber bikar tînin ku sedî 70 ê ji wan jinan jî di riya mêran di malbatê de tevlî diyardeya îtiyadê bûne.

Bikaranina madeyên hişber û zextên li hember jinan du diyardeyên girîng in ku mixabin Komara Îslamî a Îranê bi dirêjahiya temenê xwe hewl ji bo binpêkirina mafên jinan daye û tu hewl û çalakiyek bi armanca nehiştin û rakirina wan astengiyan ji aliyê navendên hikûmetî ve nehatine encamdan û di wî halî de destbiserkirina jinan, îşkence û destdirêjî di girtîgehan de tenê riya çare dibîne, ku du can bûna jinan heta ji bo parastina zarokê wê ji nikare rê li ber destdirejiyê bigre, jiber ku rejim wê yekê weke sûc dibîne .

Lê di rastî de çavkaniya wê sûcê ji hêla dewletê ve tê û yekek ji siyasetên wê yên îradekujî ye.

Di piraniya welatên cihana sêyem de zext li ser jinan tê kirin, ku Îran jî di rêza pêş ya hejmara wan welatan de ye, di ciwaka Îranê de şûnpêyên sunnet û meseb di têkiliyên ciwakê de tê xuyakirin her wek di wan zextên zêde ên li ser jinan nîşaneya wan sunnetan pêve diyar e, herçend ku di civakek bi wî awayî de dest û pêyên mêrên vekhevîxwaz jî girêdayî ne, lê ew şîweya birêvebiriyê, sîstemek mêrserdestî nîşan dide, ku binpêbûna mafên jinan ji aliyê mêran ve hegerên wê baweriya şaş û kêmkirina desthilata jinan di civakê de ye.

Baştirîn rê li hember wan kospane bilindkirina asta kultor, zanyarî, berfirehkirina şiyan û serxwebûna regezî û tekoşîn ji bo bidestanîna wekheviyê ye ku dibe him mêr û him jin bo wê yekê bixebitin. Ger em bixwazin serbestane bijîn, tew pêkhateya civakê dibe di jiyanek serbestane de par hebe û bijî.

Gelo jin nîva civakê nine û mafê jiyana kêrhatiya xwe nine? Mafê wekhevî, azadî, ewlehiya kesayetî û derbirîna raya xwe nine? "Dewleta Îranê pêwîst e zextên li ser jinan rake û bi mihaneyên mesebî wan ji mafên wan dûr neke", ewa gotineke ku ji aliyê xelkê Îranê û civaka navnetewî ve li hember Komara Îslamî tê gotin, lê heya niha tu encamek nebûye.

Lê weke xuyaye, topizê zorê her bi destê xelkê Îranê dê ve rejîma şûm bixe kirsdana dîrokê de, da ku bi geşepêdana rola jinê di civakê de him ewrên reş û tarî ên siyasetên hov û îmhaker li ser civaka mede bar bikin û ji warê me herin, him rêz û hurmeta malbatê ku bingeha civakê tê hesibandin, bihê parastin û him jî rêz û humeta ol û baweriyan bihê ragirtin.



# Îran û siyaseta sansorkirina belavokan



Dara Natiq

Destpêka sansora dewletî di Îranê de, hevdeme tevî deshilatdariya Nasiredîn Şahê Qacar û çap û belavbûna yekemîn Rojnameya hikûmetî a Îranê bi navê rojnameya 'Weqayi Itifaqiye'. Ew rojname ku bi merema gehandina zaniyariyên giştî di warê bûyerên hundir û derveyî welat bi civaka welat hatibû avakirin, mixabin her di destpêka karê xwe de bû bi tirîbûna fermî a hikûmetê û bi taybetî mijarên siyasî yên wê, li cihê vê çendê ku raporên dirust û wekxwe di warê bûyerên hundir û derveyî welêt de veguheze, zêdetir bas ji pesn û kêrhatiya direwîn a deshilatdarên wê demê dikir. Lê her wê demê tevî belavbûna wê rojnamê, hin rojnameyên Farsî ziman yên din jî li derweyî Îranê, weke rojnama 'Qanûn' li Lendenê, rojnama 'Hubillmetîn' li Kilketê û rojnama 'Sureya' li Qahirê û rojnama 'Exter' li bajarê Îstanbolê, ku ji aliyê Îraniyên derveyî welêt belav dibûn, bi awayekî rast û dûz zaniyarî û bûyerên heyî wekxwe ji raya giştî re vediguhaztin ku ew yeka bû sedemê vê çendê ku wezîrê çapemenî yê wê demê Mihemed Hisênxan ji Şah re pêşniyar kir ku navendek taybet bi sansora belavokan di Îranê de bihê avakirin. Li ser vê bingehê, di sala 1863'ê a rojî de yekemîn navenda taybet bi sansora belavokan di Îranê de, li ser biryara Nasiredîn Şah ji bo kontirola rastiyan û kipkirina her dengekî azadîxwazane hat avakirin.

Wê demê ve heya niha sansor bûye parek berçav ji siyasetên bingehîn yên sîstemên xwedî desthilat di Îranê de. Siyaseta han piştî tevgera azadîxwazane a gelên Îranê di sala 1979'an de û bi talanbirina destkevtên şoreşê ji aliyê rayedarên Komara Îslamî a Îranê ve, pêvajoyek bileztir û berfirehtir bi xwe ve girt. Komara Îslamî a Îranê her di yekem roja bidestvegirtina deshilatê, dûr ji tev yasa û rêsayên cîhanî, dest bi ser tevahiya navend û belavokên zanistî û rewşenbîrî de girtin û ew xistin bin kuntirola nawendên tepeserkar yên xwe de. Rayedarên nizama hakim bi hemî awayekî pêşî li belavbûna her cure dengekî azadîxwazane û nemaze ew nivîsokên ku di pirtûk û rojnameyan de berevajî siyasetên nizama hakim dihatin belavkirin digirtin û ew yek bi tundî qedexe dikirin.

Sansor û guherîna naveroka pirtûkên dersî li gor qazanc û îdeolojiya berteng û daxistî a sîstema hakim û danana mamosta û berpirsên alîgirên nizamê di qutabxane û zanîngeh û navendên zanistî û rewşenbîrî de, yek ji wan siyasetan bûye ku Komara Îslamî a Îranê her di destpêkê ve heya niha bi awayekî berfireh û kirêt didomîn e.

Daxistina rojname, malperên înternetî, pilompkirina navendên zanistî û rewşenbîrî, konterolkirina radyo û telefizyonan, fîlmên sînemayî, şano û muzîk û... bingeha sereke a vê sîstema dîktator bûye ku bi hemî awayekî û bi tundî pêşî ji her delîve û fersendekê bo dirkandina her cure dengekî azadîxwazane digirin.

Tenê di 25'ê Reşemeya sala 1386'an de û rojek piştî derbasbûna gera heştem a hilbijartina perlemanê, îznameya 9 belavok û 3 malperên nûçegehaniyê hatin hiloşandin. Li sala 2002'an de zêdetir ji 18 belavok di Îranê de hatin sekinandin û qedexekirin. Di sala 2004'an de zêdetir ji 20 belavok û rojname bi hinceta vê çendê ku berevajî berjewendiyên nîzamê xebitîbûn hatin daxistin. Her di vî heyamê deshilatdariya Komara Îslamî a Îranê de zêdetir ji sedan nivîskar û rojnamevan seba rexnegirtin ji kiryar û siyasetên qirêj û biyom yên Komara Îslamî a Îranê û eyankirina bîr û hizrên xwe ên xweser hatin îdamkirin û cezayên giran û heta hetayî bi ser wan de hatin sepandin. Ji wan pirtûkên bi nav û deng yên cîhanê ku di Îranê de hatinî qedexekirin, ev in: Romana "Qumarbaz" ji nivîsîna Dastayapiskî, pirtûka "Duxterî ba Goşwarêyi Miurwarîd" ji nivîsîna Tirîsî Şiwaliye, "Gûr bi Gûr" ji nivîsîna Wîlyam Fakiz û parek ji pirtûkên Wîrcîna Wulp, Margirêt Daras, Wûdî Alîn, DinBirawn û pirtûka Serpêhatiyên Raspiyan Xemgînê Menasir, ji Nivîsîna Gabriyêl Garsiya Markêz û herwisan pirtûka "Xurûs" ji nivîsîna Îbrahîm Gulistan di Îranê de hatine qedexekirin.




Ji aliyekê dinve zêdetir ji 5 fîlmên sînemayî ên bi nav û deng ku ji aliyê Pîlmjazên xwedî hêjaye welatê me ve hatine berhemanîn, ji aliyê navendên xwedîdesthilat ên Komara Îslamî a Îranê ve hatine sansor û qedexekirin û dehan fîlmsazên bi nav û deng yên Îranê bi hegera wê siyaseta kirêt bi neçarî koçberî derveyî welat bûne.

Kontirol û astengkirina torên Înternêtî û mehwareyî, fîltêrkirina malperên dijberî nîzamê û xistina parazîtan bi ser şebekeyên mahwareyî ên dijberî nîzamê roj bi roj bi awayên cur bi cur ji aliyê Komara Îslamî a Îranê ve didome.

Di 24'ê Xermanana 1381'an a Rojî, yek roj piştî axaftina Elî Xamneyî bi dijî Amerîkayê, ji hêla xeberhinêriya Îrna ve nezersenciyek hat belavkirin ku li gor vê çendê 90 ji sedî a xelkê Îranê xwazyarên diyalog û çêkirina pêwendiyan tevî Amerîkayê bûn. Çend roj piştî hingê berpirsên navenda wê nezersenciyê bi sûça sîxurîkirin bo Amerîkayê û wergirtina pere ji Balyûzxaneya Amerîkayê hatin mehkemekirin û cizadan.

Li gor rapor û amarên cîhanî, Îran henoke di ware azadiya belavokan de, di rêza 173'mîn a welatên cîhanê de ye û mijarên weke baskirin ji pêwendî tevî Amerîkayê, sekinandina bernameyên navokî ên Îranê , rexne ji meseba şîe û Welî Feqîh di Îranê de weke hêla sor tên hesibandin. Elî Xamneyî Rêberê Komara Îslamî a Îranê, ji 42 rêber û berpirsên dewletî yê cîhanê ye ku ji aliyê raporhinêrên bê sînor ve, dujminê azadiya belavokan tên hesibandin.

## Îran herêmek xwedî xesar di warê ziman de




Zêdetir ji 6700 zimanên cuda, ji aliyê akinciyên ser rûyê erdê ve mifah jê tê wergirtin ku niviya wan zimanan niha tevî pêvajoya jinavçûnê berbirû ne. Binav kirina 21'ê Fewroyeyê weke roja cîhanî a zimanê dayîkî ji aliyê Konfiransa Giştî a Yonisko ve di sala 1999'an de, helwêstek bû ku wê saziyê di pêxema pêşî girtin bo jinavçûna vê bihaya dewlemend û cur bi cur a zimanê mirovî û herwisan girîngîdan û pêkanîna delîve û fersendek taybet bo berevanî kirin û pêşvebirina wan zimanên ku vê gavê ji hêla sîstemên dagîrker yan ji bi awayên xwezayî tên asimîle kirin, hat pejrandin. Welatê Îran bi hegera hebûna hejmarek berçav ji ziman û devokên 'bomî' di wî welatî de, ji wan herêmên xudî xesar yên cîhanê di warê ziman de tê hesibandin.

Îran yek ji wan welatan e ku 6 netewên, Fars, Kurd, Azerî, Ereb, belûç û Turkmen têde dijîn. Lê mixabin rayedarên Komara Îslamî a Îranê zimanê Farsî weke zimanê fermî yê welat ragehandine û di vî heyamê deshilatdariya xwe de bi hemî awayekî û ji hêla navendên tepeserkar yên xwe ve berdewam cehda asimîle kirina ferheng û kultûra û nemaze jinav birina zimanê netewên din yên Îranê daye.

Mixabin zarokên ser bi wan netewên bindest neçar in ku her di yekem roja destpêkirina qonaxa xwandina xwe de, pêvajoya perwerdehiya xwe bi zimanek biyanî anku zimanê Farsî dest pê bikin kku ew yeka ji di warê piskolojîkî ve bandorek nerênî li ser hizr û bîrkirina wan dikin û dibe sedema wê çendê ku zarok seh bi kêmasiyekê di jiyana xwe ya destpêkî de dikin.

Vê gavê di qotabxaneyên Îranê de cehdek berçav ji bo perwerde kirina zimanê Erebî (zimanê olî û zimanê Qoranê) weke zimanê sêhem tê bikar anîn. Lê ewa di halekê de ye ku yek ji sêye xwandekarên Îranê îmkana fêrbûna zimanê dyîkî a xwe heta di qonaxên destpêkî yên xwandina xwe de tuninin û diviya tevî zimanek ku tu nasiyarî û zaniyariyek li ser tuninin, xwandin û nivîsîna xwe fêr bibin.

# Dîmenên Îtiyadê di sînemayê de

N: Mumtaz Ebdullahî
W: Şehab Xalidî



Îtiyad çi wek tawan û çi wek nesaxî hertim bala fîlmsazan û alîgirên sînemayê bo aliyê xwe rakişandiye. Helbet ya ku li bîr û mêjiyê hunerî ya xelkê de ji îtiyadê di sînemayê de heye, pitit rû û reftara bengdaran e ku wek karakterên kampiyotrî xwe nîşan daye ku di cihê nîşandana rastiyan, rengvedanek vajmanî ji rastiyan nîşan dide. Di derbarê dîmenên îtiyadê û motadan di fîlmên sînemayî û zincîre fîlmên televeziyonî de serbarê rexnegirên sînemayê, pizîşkan jî hinek rexne hene û gellek ji dîmenan jî di warê pizîşkî de ne zanistî dikin. Bo mînak me gellek caran bihîstiye ku pizîşkan derheq nîşandana cigareyan di fîlmên sînemayî û programên televîziyonî de hişdarî dane û bas ji metirsiyên piropagendeyên nigatîv a di warê cixaran de û bandora wê bo ser nûciwanan û ciwanan kiriye. Li ser bingeha pênase û têgehiştina nû ku ji silametiyê heye, silametî têgehek berfireh û çend alî ye ku bê şik propagende û sînemayê bandor li ser heye.

Gellek ji pizîşkan derbarê îtiyadê û dîtingeha fîlmsazan bi vê û wan dîmenên ku ji bengdaran ji fîlm û zincîrefîlman de tê weşandin, rexneyên ciddî hene,

Dr. Human Narîncîha kargêrê Giştî yê Karûbarên çandî û pêşgiriyê ser bi Sitada Xebatê di vî warî de li ser vê baweriyê ye ku: berhemên curbicur di warê fîlman de ji 40 salan berî niha ve ji bengdaran dîmenek têkçûyî û xemokî nîşan dane ku ew yek bûye sebeb daku gellek ji malbatan jî dîmenek weha ji bengdaran hebin û heta zarokên wan jî nekevin nava wî halî de, hest bi metirsî û tehlukeya îtiyadê nekin.

Dîharîkirina şekl û şemayilê bengdaran, ew jî bengrarên ku gihîşine asta dawiyê, bûye sebeb ku herkesek bengdar be, lê ew reng û rû bi xwe ve negirtibe, em bawer nekin ku bengdar in. Ew yek di rastî de bûye sebeb ku ji sedî 50'î malbatên Îranî 5 salan direngtir hest bi bengdarbûna zarokên xwe bikin, lê hinek kesan bîr û rengên cuda di vî warî de hene. Dr. Perwîz Mezahirî, Kargêrê Rewanpizîşkên Îranî ser vê baweriyê ye ku "Îtiyadê aliyê xwe yê bayusaykusoşyal heye, wate hem pirsên jîngehî hene, û hem jî derûnî û hem jî civakî" lê di sînemayê de mixabin tev aliyên vê pirsê nahên nîşsan dan.

Dr. Ebdulrehman Bedil Rehîm, pisporê mêjik û esab di vî warî de dibêje: "fîlmên niha zêdetir terikkirina îtiyadê bi awayê sernişîvbûna azad nîşan didin, bo mînak kesê bengdar çend rojan xwe dike jorekê daxistî û piştrebi rûçikekî geş û peyt li wir derdikeve.

Ew yeka perwerdeyekî şaş bi dû xwe re çê dike. Dema kesê ciwan van fîlman dibîne, ji xwe re dihizire ku terikkirina îtiyadê karek pir senahî ye, ku wusan bû ezê pêvajoya xwe ya îdtiyadê her bidomînim û piştî salan dê heyamê heftiyekê xwe di jûrekî daxistî de hepsî bikim û bi sanahî vê yekê terik bikim. Dr. Narincî jî her li ser vê bawerê ye ku 70 ji sedî ya dermanê îtiyadê aliyên rûhî û rewanî bi xwe ve digire û dûr e ji îradeya cismî, lê eva di halekê de ye ku zaf caran di fîlman de tê xuyakirin ku kesên bengdar bi dar yan textekê ve girê didin û dixwazin bi vî awayî rêya terkkirina îtiyadê nîşanê xelkê bidin, bê ku bizanin şêwazên çareserkirina vê diyardeyê bi bê rêyên dirust û kesên pispor û dermanên taybetî karek dijwar û bêencam e. Civaka Doktor û Pisporên warê Tendurustiyê di Îranê de, dibêjin ku nehewce ye ji bo pêkanîna tirs û hişdarî danê, em direwan bikin û rêyên şaş nîş xelkê bidin, ji ber ku wê demê îrade û baweriya giştî kêm dibe û cehd û xebata han bêbandor dimîne.

Bêşik îro rojê îsbad bûye ku egerên civakî û çandî qasî 50'î ji sedî xwedî bandor in li ser dabînkirina tendurustiya civakê. Di cîhana îro a ragihandinê de sînema û televîziyon di pêşxistina asta saxlemiya civakê nemaze di warê perwerdehî û kultûrsazî de girîngiyek taybet heye. Lê ji aliyek din ve nîşandana dîmenên şaş û nezanistî pêvajoya saxlemiya civakê aloz dike. Lê ji bo çêkirina berhemên sînemayî û dîmenên di warê saxlemiyê de divêt ravêj tevî pizîşkên pispor bê kirin, heya ku bi nîmayişdana dîmenên zanistîtir di pêşxistina asta saxlemiya civakê de xwedî bandor bin.

## Pêşnimêjê Meşhedê:

# Muzîk ji tiryakê xirabtir e



Seyêd Ehmed Elmolhida mamostayê nivêja înê a bajarê Meşhedê di gotara xwe a nivêja înê de ragehand ku: ger muzîk hunerek xwedî rastîn ba, 'Eimê Tehar' ku xudiyê hunermendên herî bihêz yên vê demê di nava ola şîeyan de bûn, ji vê hunera kirêt mifah werdigirt in, lê ewa ku mifah jê wernegirtine, ew yek bi diyardeyek heram û kirêt dihesibandin.

Navbirî herwisan ragehand ku pêşveçûn û girîngî dan bi muzîkê di welêt de, berevajî orfên Îslamê ye. Gotarbêjê nivêja Înê a bajarê Meşhedê amaje bi gotina Xomeynî kir û got: zirara muzîkê ji tiryakê zêdetir e. wî herwisan ji malbatan re şîret kir ku, nehêlin zarokên wan guhdariya muzîkê bikin. Divê ew nehêlin ku zarokên wan tevlî vê pêvajoya qirêj bibin û ji orf û biryarên Xude dûr Kevin.

Hêjayî gotinê ye ku yek ji muzîkdanên Îranî di melpera xwe de nivîsandiye ku: Gotarbêjên nivêja înê a bajarê Meşhedê nexwastî harîkariyê bi muzîk û pêşveçûna vê dike. Her ewa ku dibêje muzîk heram e, xelk û bi taybetî nifşa ciwan dikewne ênyadê û bi merema dijberî kirin tevî wan biryar û raspardeyên hikûmetî zêdetir girîngiyê didin muzîkê. Di rastî de mirov dibe bêje ku ger muzîka Îranî piştî serkevtina Şoreşa gelên Îranê tevî pêşwazî û girîngiya germ û gur a giştî berbirû bûye, wedigere bo dijberî kirina kesên han.



Hejmar 154, 6 'ê Adara 2011

# Merheba



**Bêrî Bihar**

**Adar heyva te ye,**
**Iro roja te ye,**
**Dizanim ne îro û ne jî tu rojan nayê ji te re,**
**Kulîlkek, an jî nameyeke bi merheba.**
**Navê te gotarên serê rojnameyan be jî,**
**Bi pûntên gir, li ser jora heman nûçeyan**
**Tu yê tim li serê riya bî,**
**Li nava laşfiroşan û di destê mirovên hindirqewartî.**
**Li rêya birçîtiyê,**
**Di çavên te de sîtem û valahiya temenekî,**
**Tu yê tim di hawar û qîrîniyan de bî.**
**Bîbûkên te pirtûkek zelal in,**
**Têde tê xwendin zordestîya nizanim çend temenan.**
**Kî bixwîne wê**
**Wê bistîne para xwe ya rûreşiyê**
**Arên kû berdane canê te,**
**Te kirin sotik û teraf,**
**Bi hêza te xwe ji bahozan parastin.**
**Bêxwestin û biryara te,**
**Tecawûzî jiyan û bîraniyên te yî pîroz kirin.**
**Li zîndanan te can da canên din û navê wan te danî "Zindan"**
**Bêlome be nê sere guran!**
**Di nava gemara dîrokê de tû ne tiştekî**
**Lê birînên kevin didin zanîn kû çawa ji bo te dimeşe jîn.**
**Di kîjan ferhengê de bi hevre ne,**
**Birçîbûn û birumetî,**
**Li serbajaran weke cilekî reşe birçîtiya te,**
**Di bihiştan de veşartîye û negihan e rumetiya te.**
**Hêsîrî û belengazî te kir bûxçik û da sermilên xwe,**
**Tu bûyî dayîka kul û êşan,**
**Jina nizanim kîjan malxerabî,**
**Xûşka kîjan cambazî,**
**Keça kîjan bêfam û zordar î**
**Li van bajarên bêîman bi birînên xwe ve dinalî.**
**Baranê biriye rengê porê te,**
**Tû bêcîh û war mayî.**
**Her ku di bîra xwe tînî ew deşt û zozanên xwe ,**
**Ew gelî û çiyayên xwe.**
**Û ji xwe dipirsî**
**Gelo heye ku li min vegere jiyaneke wekhevî, xwezayî û bi mirovatî?**
**Îro roja te ye,**
**Navê te di sere heman nûçeyan de be jî,**
**Tu yê dîsa li riya birçîtiyê bî,**
**Dîsa di hawar û qîrîniyan de,**
**Heya ku xweza, rojekê vegere ser lîsê xwe.**
**Te hemêz dikim bi tevî êş û kulên te,**
**Diramûsim cihên pirêşiyayî,**
**Diramûsim çavên te,**
**Ez bawerim bi te,**
**Ew destên ku dergûş di hejîne**
**Wê rojekê dûnyayê bihejîne...**

**Adar 1998**

# Agirî

Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye
Ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

www.kurdistanmedia.com/kurdi
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat:
AFKB.P. 102- 75623 ParisCEDEX 13 –FRANCE
E - Mail: agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com


## Parlamentoya Kurdistanê jî bû xwedî TV




Televîzyona Parlamentoya Kurdistanê (PKTV) dest bi weşana test kir.
PK TV dê rûniştinên parlamentoyê de û bas û nîqaş, herweha bûyerên li parlamentoyê di qewimin, bi awayekî zindî biweşîne.
PK tv, piştî weşana testê ya 30 rojî, dê derbasî weşana normal bibe.
Frekansa 11393, li ser Nilesat û Arabsat

## Xanima yekem a Lîbiyê bi 20 ton zêran ve bo Alman hellat

Sefiye Firkaş, xanima yekem a Lîbiyê, serbarê li rojevde bûna welatê wê, nasiyariyek wusa li derveyî Lîbiyê de nine. Ew berevajî xanimên yekem yên berê yên Tûnis û Misrê, xwedî nifûz nine. Ew jina duyem ya Qezafî ye û pitir ji 40 sal in ku hev rêtiya mêrê xwe li Lîbiyê de dike. Ew tevî keça xwe û hin ji nizîkên malbata xwe bo Almanê reviyaye. Ew xwediyê şirketek balafirî bi navê ''Teyran Elberaq''e ku zêde heciyan bo Erebistanê vediguhezîne.



Tê gotin ku wê jinê, 20 ton(20,000 kîlo) zêr xincî saman û pere û milkên din kom kiriye û bi wan zêran ve derbasî Almanê bûye. Alarabiya

## Meimûrê wunda yê FBI'ê li başûra Rojavaya Asiyayê de destbiser e




Wezîra karê Derve ya Amerîkayê, Hîlarî Kilîntonê ragihand ku gorî zaniyariyên desthatî, Rabêrt luwînson, meimûrê berê yê FBI'ê ku çar salan berî niha bizir bûye, zîndî ye.
Wê da zanîn ku ew niha li deverek li başûrê rojavayê Asyayê de zîndanî ye. Gorî vê agahiyê jî, ew dever welatên Pakistan, Efxanistan û Îranê ji xwe digre.
Hîlarî Kilîntonê daxwaz ji Îranê kir ku li vî warî de hevkariya wan bike daku ew bi saxlemî vegere nav malbata xwe.
Rabêrt Luwînson, 4 salan berî niha, anku li meha mars a 2007'an de li Girava Kîş li başûrê Îranê de bizir bûye. Amerîkayê heya niha çendîn caran daxwaz ji Îranê kiriye ku li ser rewşa wî girtiyê Amerîkayî zaniyariyan bide, lê rayedarên Îranê xwe ji vê meselê baz didin.

## 800 hezar Kurd li Almanyayê dijîn

Wezareta Navxwe ya Almanê, aşkere kir ku 800 hezar kurd li vî welatî de dijîn. Herweha da zanîn ku li Almanyayê, PKK di nav kurdan de koma herî xurt e û bal kişand ku pirsa kurd li Tirkiyeyê mimkûn e bi diyalogê bê çareserkirin, û herweha polîtîkaya "pêşîvekirinê" ya AK Partiyê jî rexne kir ku heta niha bi kêr nehatiye.
Herweha derheq xwendina bi zimanê kurdî jî hate eşkerekirin ku li Bremenê 148, li Hamburgê 97, li Saksonyaya Jêrîn 546 û li Ren Vestfalyaya Bakur jî 122 xwendekarên kurd di dersan de bi kurdî perwerdê dibînin.
Alman cara yekê ye derbarê polîtîkaya kurdî de bi resmî tiştek diyar dike.
Endama Meclisa Federal a ji Partiya Çepgir Ulla Jelpke li vê derheqê de diyar kiriye ku li gorî me, Alman digel pêvajoya diyalogê de ye, divê vê yekê bi zimanekî vekirî jî bîne ziman û bibe parçeyekî çareseriyê. AKnews

## Davutoxlu: Nasnameya Kerkûkê Turkemanî ye û Teleifer jî kela wê!!!



Rojnameya "Todeys Zeman" ji zarê Emed

Davotoxlu, Werzîrê Derve yê Turkiyê derheq Îraqê daye zanîn: ''Yekîtiya axa Îraqê bo wan pirr girîng e, lê bajarê Kerkûkê jî nasnameyek Turkemanî heye û kes nabe xwe lê bike xwedî.
Navhatî dîsan ji Tirkmenên Telehferê re gotiye:
Çarenivîsa Îraq û Turkiyê bihevre girêdayî ye û emê rêgiriyê ji jinavçûna hevwelatiyên Îraqî bikin. Paşan soza avakirina zanîngehekê ji bo avakirin û vejandina aboriyê li Teleiferê daye turkemanan. Herwiha ji bo Tirkmenên ku vegeriyên Teleiferê, ê xaniyan ava bike.
Davutoxlu dîsan daxwaz ji xelkê Teleiferê bo vegeriyana bê tirs ji bo malên xwe kiriye, jiber ku bi raya wî, vegera wan dê aşitî û aramiyê bîne Îraqê. Paşan şekirê dişkîne û dibêje: Kerkûk nasnameya Turkemanan e û Teleifer jî kela wê ye û li tu serdeman de stûxwar nebûye.

# Mêrê 39 jinan û jîna bihevre li awahiyek 100 odî de

Ziyona Çana, xweşmêrê Hindistanî!, tevî 39 hevjîn, 94 zarok, 14 bûk û 33 neviyên xwe di awahiyek çendqatî de bihevre dijîn. Xaniyê wî yê 4 qatî, ji 100 odeyan pêk tê û di navenda gundê Baktwang li eyaleta Mîzoram a Hindistanê de hilketiye.
Ziyona Çana ji rojnameya San re gotiye: Ji bo ku ez ewdeke




baş û taybetî yê xwedê me, gelek keyfxweş im ku wî berpisatiya xwedîkirina hejmarek zaf ya mirovan daye min. Ez bona vê ku mêrê 39 jinan im û mezintirîn malbata cîhanê îdare dikim, gelek keyfxweş im. Li gor wî, birêvebirina wê kempa mezin, pêwîstî bi nezma nîzamî heye, lewma Zatyagî, mezintirîn hevjina wî, erkê nezm, paqijî û çêkirina xwarina wê mala mezin li stû ye.
Ji bo danek xwarina wê malbatê, 30 heb mirîşk, 60 kîlo sêwik û 100 kîlo birinc hewce ye.
Çana ezmûna zewaca li gel 10 jinan di salekê de heye û hertim ciwantirîn jin bi wî re



dijît û jinên din jî divê di odeyên din ên malê de bijîn.
Rînkmînî, yek ji hevjînên Çana ku 35 sal temen heye, Çana bi mêrê herî bedev, egîd û xweşik li gund de dizane. Wê 17 sal berî niha û piştî gihîştina nameyeke Çana bona evînî û jiyana hevpar pêre, bi Çana re zewiciye.
Ligel hebûna wê hejmara zaf ya jinan, Çana hêj di hizra zewacê de ye û dixwaze bi armanca zewacek din, sefera Amerîkayê bike.